# BasNûçe
HERDEM RASTÎ

ROJNAME YA HEFTEYÎ YA NÛÇEYÎ • BIHA 2.5 TL

HEJMAR 2 • 3 - 9 GULAN 2014 • WWW.BASNEWS.COM




# Bazirganî sînoran radike



Iraq duyem hevparê bazirganiyê ya Tirkiyeyê ye. Li gorî daneyên fermî, ji sedî 70'ê a bazirganiya salane ku 12 milyar dolar e, bi Herêma Kurdistan re tê kirin. Hinardeya ku Tirkiye di 9 mehên pêşî ên sala 2013'an de ji bo Herêma Kurdistan pêk anî, li gorî heman serdema sala çûyî, teqrîben ji sedî 9 zêde bû û gihîşt 8 milyar 473 dolaran. Hinardeya ku di Adara sala 2014'an de hat pêkanîn jî, li gorî heman serdema sala çûyî, ji sedî 5,4 zêde bû û gihîşt 540 milyon 299 hezar dolaran. Herêm, ji hêla veberhênanê ve jî hê bi avantaj e.

➜ 6

## Ji bo çareseriyê federasyon

BasNûçe'yê, di derbarê encamên hilbijartinê û pêvajoya çareseriyê, bi Serokê Giştî yê Partiya Maf û Azadiyê (HAKPAR) Kemal Burkay re dîtin û nirxandinên wî axivî.

➜ 8

## Rojeva me xweserî ye



"Hûn bi civakê re têkiliyên xwe bi awayekî demokratîk birêxin, wê pergala dewletê jî dê bêgav bimîne ku bibe guhdarê demokrasiyê û bê guherandin."

➜ 2

## 3 Bira'yên Kolana İstiklalê

Di meydan û kolanên bajarên mezin de muzîka ku tê bihîstin hinek caran ji ber sedemên aborî, hinek caran jî ji ber dijwariyên jiyanê, wek serhildanekê derdikeve holê û ev muzîk bi wextê re wek muzîka kolanan bûye parçeyek çanda bajarvaniyê.

➜ 16




## Diyaspora ya kevnare: Kurdên Xûresanê



Kurd li bakûrê eyaleta Xûresanê dijîn. Xaka ku ji kurdên vê deverê re bûye welat nêzî 100 hezar kîlometreqare fireh e. Peytexta kurdên Xûresanê bajarê Qûçan e. Bajarê Şîrwan ku nifûsa wê 500 hezar e ji sedî 75 kurd e. Her wiha li peytexta eyaleta Xûresanê Meşhedê jî bi deh hezaran kurd dijîn.

➜ 12

## Peşmergeyê biçûk yê 64 salî



➜ 15

# Rojeva me xweserî ye



**Raya giştî ya Tirkiyeyê, Gultan Kışanak him bi parlementeriya Partiya Aştî û Demokrasiyê û him jî bi têhildanên wêrek yên di derbarê çareseriya pirsgirêka Kurd de ku dianî zimên di dema bi Selahattîn Demîrtaş re hevserokatî dikir re tê naskirin. Kişanak di hilbijartinên herêmî yên 30'yê Adarê de ku çêbûn, bi rêjeyeke bilind a dengan, ji sedî 58'î, ji bo şaredariya Bajarê mezin yê Amedê hat hilbijartin. Di dîroka rêveberiya herêmî ya salane ya Amedê de jina pêşîye ku ev peywîr girt ser xwe ye. Di nava 37 jinên ku di vê hilbijartinê de li Tirkiyê wekî şaredar hatine hilbijartin de ya ku li bajarê herî qelebalix, bi hevserokê din Firat Anli re dê bi rê ve bibe. Piştî bi demeke kin ku hat hilbijartin re, bi daxuyaniyên wekî; ew dê ji bo xweseriya demokratîk gavê bavêjin. Divê rêveberiyên herêmî ji heyinên kanên ku li herêma wan der tên parê bistînin, bal kişand ser xwe.**

**Tê fêmkirin ku Gultan Kişanak dê bi daxuyaniyên xwe yî di serî de, çareseriya pirsgirêka Kurd ya bi dadwerî û mayinde, xweseriya demokratîk, rêveberiya herêmî ya alternatîf û demokratîk bi beşdarî û bi karê ku bike re hê pir têkeve rojevê.**



Ronya Şeran

***Hûn jî berê rojnamegerek bûn. Piştre hûn bûn parlementer. Niha jî hûn hevşaredarê bajarê mezin yê Amedê ne. Tiştê bi vî awayî hûn veguhertin çi bû?***

Bi rastî qet ne tercîha min bû. Te dît, ev hilbet pirseke pir mezin e. Hûnê bipirsin ku "jiyaneke ku hûn tercîh nakin çawa hûn dijîn?" Di encamê de, di pilansaziya min a jiyana kesane de birêçûneke wisa tunebû. Hinekî jî dikarim bibêjim ku encameke van xebatên bizava jinan bû. ji ber ku ez him rojnamegerek bûm û him aktivîsteke jinan bûm. Ango min hewl dida ku herduyan bi hevdû re bimeşînim. Hinekî berhevdeyên min ku rojnamegeriyê çêkiribû jî hebû tabî. Rojnemegerî qadeke pir giring ya xebatê ye. Min 12 salan bê navber rojnamegerî kir. hilbet min keda xwe dayê. Wekî kedkareke çapameniyê, wekî ferdeke rojnamegeriya azad, hemû tiştên ku ji destê min hat min xwest tevlê bikim. Lê belê wan 12 salan jî gelek tişt dane min. Berhevdeyeke ku vêya kiribû hebû. Ezmûnek hebû. Hinekî jî bi bandora vê ezmûna min ya aktîvîstiya jinê re, bendewariyek bizava jinan, ji bo ku ez vê berhevdeya xwe di qada siyasî de veguherînim têkoşîneke polîtîk, ji min çêbû. Xwestinek wan î wisa çêbû. Piştî ku ez bûm parlementer jî êdî ne pêkan bû ku pêşiya vî tiştî bê girtin. Piştî ku mirov bi parlementeriya ku di siyaseta giştî de bi bandor re rûbirû dimîne jî êdî ew di nava xwe de her carê peywîreke nû dide ber mirov. Reva ji vêya ewqas ne pêkan e jî. Serokatiya şaredaryê jî hinekî wisa çêbû. Dîsa hinekî bi pêşniyaz û bendewariyên, bizava jinan, yên partiya me û bizava me ya giştî re wekî peywîreke li ber min bû. Ji bo vê peywîrê bicîh bînim tiştê ku ji destê min bê ez jî dê bikim.

***Civaka Kurdistan, gelê kurd di mijara xweseriya demokratîk de di çi rewşê de ne?***

Du aliyên xweseriya demokratîk jî hene. Yek jê dibêje ku xweseriya demokratîk bi xwe esil projeyek nîvendiya civakî ye, ango dibêje, ev dibe, têkiliyên serdestî dibe. Dibe ku organîzasyona dewetê, vê organîzasyona dewletê li himber vêya di ber xwe bide, lê belê hûn bi civakî li bendî wê nemînin, hûn têkiliyên xwe yî hundurîn bi awayekî demokratîk birêxistin bikin. Ku hûn bi civakî têkiliyên xwe yî hundurîn bi awayekî demokratîk birêxistin bikin, ev pergala dewletê jî dê bêgav bimîne ku bibe guhdarê demokrasiyê û bê guherandin. Projeyeke ku vê angaştê hildigre ye, esil aliyê ku em nîqaş bikin difikirim ku ev e. Ango cîvakek dê çawa xwe birêxistin bike? Jin dê çawa birêxistin bibe, ciwan çawa birêxistin bibin, cotkar, gundî û wd.? Herkes dê xwe di nava vê têkoşîna azadiyê de, di têkoşîna civaka demokratîk de li ku bicîh bikin? Esil tiştê girîng ku em pipeyîvin ya ku em dibêjin avakirin jî ev e. Ku em vêya bikin, aliyê din ango aliyê duduyan yê xweseriya demokratîk, guherîna zagonan, helwestguherandina dewletê, pejirandina kurdan, naskirin û mafdayina wan dê hê pir hêsan bibe, ji ber ku dawî dawî ev têkiliyên serdestiyê ku bi zordayinê neyê dahfdan nayê çareserkirin. Ango zemîneke ku têkiliyên serdestiyê dahf bide pêwist e. Belê, belkî di nava 30 salên çûyî de têkoşîneke pir hişk hate jiyîn, vê têkoşîna hişk rojevek ava kir, bû kartêkerek dahfdanê, dinamîkek guherînê derxist holê lê belê esil bi wateyek rastî hêza çareseriyê pêvejoya guherîna civaka demokratîk e, veguherîna wê, civakekek demokratîk e. Di vê mijarê de me navbeynek girîng bidest xist lê belê kêmaniyên me hene.

***Baş e, gelên Tirkiyeyê niha ji vêya re amade ne gelo? Li Tirkiyeyê Xweseriya demokratîk projeyeke dikare bê pêkanîn e ji bo aniha?***

Ez dikarim bi hêsanî bibêjim ku êdî bûye rojeva bingehîn ya Tirkiyeyê, Tirkiye êdî vê mijarê nîqaş dike û ne mijareke ku pir taloq bikin. Ez nafikirim ku dewlet jî li himber vêya pir guhnedar be. Ji bilî vêya pêşbîniyên kurdan rê ji tiştekî wisa re vekirin, ya yekemîn kirdeyên maf yên din, hestên wekî, pirsgirêkek me jî ya azadiyê heye, divê em jî têkoşîna vê yekê bikin, afirand. Ya duyemîn, aliyên ku ji bidestxistinên kurdan sûde wergirtin çêbûn. Ji aliyê azadiya jinan ve, ji aliyê nuneriya jinan ve, jinên Kurd modela hevserokatiyê danîn holê, ev li dora 10 salan fiîlî pêk anîn, bi derbaskirina di gelek qonaxan re di pratîkê de pêk anîn, di encamê de îro zagona partiyên siyasî hat guhertin, pergala hevserokatiyê bû rewşeke zagonî. Di vir de xeletiyek tune ye, bi normalî hemî pêvejoyên veguherînê wisa ne, civak li gor pêwistiyên xwe, xwe bi cîh dike, dispêre rewaniyê û zagon jî bi vêya re li hev dike. Yan na zagon jî dê wekî di dema ku hatiye nivîsandin de bimaya ku muxalefeta civakî tunebûya. Muxalefeta civakî her tim ji bo guherînê vêya dahf dide. Revabûna xwe ji civakê digire, ji binesaziya rêxistinbûyîna civakê distîne û zorê didê. Ji ber wê yekê jî difikirim ku êdî Tirkiye ji nîqaşên xweseriya demokratîk re guhgirtî bimîne, heta vê dawiyê min daxuyaniyek da; divê rêveberiyên herêmî xweser bin, min tiştekî wisa got û şaredarê Manîsayê jî derketiye gotiye ku em jî parê dixwazin. Ev tiştekî normal e.

***Bertekên ji bo vêya hûn çawa dinirxînin? Bertekên pir hişk girtin vê peyvînê?***

Ez nafikirm ku bertekên pir hişk gir-

tibin, ango li vî welatî yên li himber guherandinê di ber xwe didin girseyek biçûk heye, ew ji xwe bi nijadperestyê re bihev ve nin, em wana ji derve bihêlin, te dît, wan girseyên biçûk marjînal ku daketine asta nîjadperestiyê ji derve bihêlin, ez dikarim bibêjim ku bertekên erênî stendine, di asteke erênî de hate nîqaşkirin, çima em xwseriyê nîqaş nakin, çima em xurtkirina kanên aborî yên rêveberiyên herêmî nîqaş nakin, gelek dengên ku çima di çareseriya pirsgirêka Kurd de ev jî nebe modelek derketin.

***Di rojên derbasbûyî de civîna gel ya ewilî jî çêbû, ev jî perçeyek ji xistina pratîkê ya vê projeyê bû gelo?***

Hilbet niha rêveberiyên herêmî ji sê aliyan de di bin vesayetê de ne; di bin vesayetek malî, di bin vesayetek rêveberî û di bin vesayetek siyasî de ye. Niha ji van her sê aliyan jî divê pêşketin bê bidestxistin, dahfdana veguherînê bê kirin. Rûerda vesayeta siyasî ku tê şuxulandin meclîsên şaredariyan in. Gel diçin dengê xwe didin, meclîsekê hildibijêrin, lê belê erkeke wê meclîsê tune ye, ango hûn dikarin zagonek wisa bifikirin ku gel meclîs hilbijartiye, lê belê li gor pêwistiyên gel ku biryarek siyasî bigire dê bê feshkirin, zagonek wisa heye. Di nava zagona şaredariyên Tirkiye de hukmên ku dikare meclîsan fesih bike de ev jî heye; "Meclîsa şaredariyê ji bilî peywîrên bi zagona ku xwe daye pênasîn pê ve heke biryareke siyasî bistîne dê ew meclîs fesh bibe" tê gotin. Serokê şaredariyê dê ji peywîrê bê bidûrxistin. Ango hem tu ji vê ya re dibêje meclîs û him gel dixapînî "tu meclîsê hildibijêre" dibêjî, gel diçe dengê xwe dide û endamên meclîsê hildibijêre. Meclîsek ava dibe. Lê belê dû re tu ji meclîsê re dibêje ku "tu biryarên siyasî nikare bistîne." Yanî meclîs bi normalî dezgeha zagondanînê ye. Zagondanîn çi ye? Rêzandanîn e, ango mirov dikare qala meclîsekê bike ku erka wê ya rêzandanînê tunebe?

***Baş e. Di şaredariyan de meclîsa şaredariyê ne dezgeheke ku rêzanan deyne, li gor zagonê bi tevahî ji bo mekanîzmaya îdarî hê baş bişuxule, mekanizmayek ku ji bo gelparêz xuya bibe hatiye avakirin?***

Em dibêjin ku; êdî ne wekî 'goya' be (çîrokî be). Ku gel vêya hildibijêre, gel wekî meclîsê hildibijêre, ew jî dê wekî meclîsê bixebite. Rêya şikandina ve vesayeta siyasî ya herî girîng, xebitandina meclîsa şaredariyê bi rastî wekî meclîsa gel xebitandin e, niqaşkirina ku dikare rêzikan deyne ye. Ango gel hilbijartiye û gotiye ku "ji dêleva min here, min temsîl bike". Ango gel ha ji bo parlementoya Enqereyê parlmenter hilbijartiye ha jî ji bo şaredariya xwe endamê meclîsê hilbijartiye, di encamê de gel ji bo temsilkirina xwe ra'ya xwe dide yekî. Gotiye "temsîliya min bike. Here pirsgirêkên min çareser bike. Ji dêleva min biryaran bistîne. Ji bo demekê, 5 salan ez ra'ya xwe didim te. Here van karan bike." Lê belê zagon dibêje "na tu nikarî bikî." Ji ber wê yekê jî em dê meclîsa şaredariyan wekî meclîsa gel, wekî meclîsa bajêr bi kar bînin. Meclîsa şaredariya bajarê mezin ya Amedê, di civîna xwe ya vê hefteyê de bi berdewamî ev nîqaş kirin.

***Di kîjan mijaran de lijne bê avakirin? Peywîrên van lîjneyan, misyona wan, berpirsiyariya wan dê çi be? Dê çawa xebatê bimeşîne?***

Emê vana nîqaş dikin û bi pêşniyazên ku hevalên me yî endamên meclîsa şaredariyê derxistine re, dê 15 lîjne bên avakirin. Belkî rojek du rojên din jî ji bo nîqaşê dema me hebe. Belkî yek dudu yên din jî lê zêde bibin lê belê bi avakirina hindikî 15 lîjneyan, ji perwerdehiyê heta tenduristiyê, ji xurtkirina aboriya herêmî heta polîtîkayên jinan, lîjneyên ji bo wekheviya girseyên dezavantaj bigirin heta lijneyên mijara çandî û geştûguzariyê di her qadên jiyanê de em dê lîjneyên xwedî peyv, bikaribe polîtîkayan biafirînin, bikaribin pêşniyazan bikin ava bikin. Em difikirin ku meclîsê bi vî awayî xurt bikin û bi xurtkirina meclîsê re em dê ji bo potansiyela guherîna van zagonên ku vesayetê diafrîne derxin holê. Aniha zagona şaredariyê tam zagonek vesayetê ye. Zagonên ne ku dibêjê, dê çi bike, tarîfa dê çi neyê kirinê dide ne, divê vana bên guherandin. Divê veguherin zagonên hê demokratîk, hê ji vîna gel re rêzê bigire, veguhere zagonên ku meclîsên herêmî xurt dikin.

***Ji bo Amedê bi zelalî projeyên ku têkevin pratîkê hene? Mînak bi qasî zanim ji pirsgirêkên herî girîng yek jê jî, ciwanên ku pêwendiya wan bi tilyakê re çêbûne ye, ji bo vêya xebatek heye gelo?***

Ji bo vê mijarê xebat hatine destpêkirin. Hevalên me dê ji bo têkoşîna bi muptelabûna maddeyan planeke çalakiyê derxin. Em rêbazeke wisa raber dikin; hemû dînamîkên bajêr em dê tevlî pêvejoyên biryardayinê bikin. Bi wan re em dê plansaziyan çêbikin. Ji bo wê yekê, ji bo planên çalakiyên muptelayên tilyakê, serokatiya Daîreya Xizmeta Civakî ya me, dê bi hemû rêxistinên civakî re hevdîtinan pêk bînin û civînan li dar bixin û planeke bernameya salene deynin ber me. Ango kî dê çi bike? Meclîsên ciwanan dê çi bikin? Saziyên di vî warî de xebatê dikin dê çi bikin? Şaredarî dê çi bikin? Şaredariya bajarê mezin dê çi bike, bi vî awayê ku peywîra her kesî bê pênasekirin, em dikarin qala pêvejoya ku hemû dinamîkên civakê seferber dibe bikin, ji bo plankirina vê yekê hevalên me dixebitin.



***Rêveberiyên herêmî ji sê aliyan de di bin vesayetê de ne; di bin vesayetek malî, di bin vesayetek rêveberî û di bin vesayetek siyasî de ye. Niha ji van her sê aliyan jî divê pêşketin bê bidestxistin, dahfdana veguherînê bê kirin. Rûerda vesayeta siyasî ku tê şuxulandin meclîsên şaredariyan in.***



***"Hûn bi civakê re têkiliyên xwe bi awayekî demokratîk birêxin, wê pergala dewletê jî dê bêgav bimîne ku bibe guhdarê demokrasiyê û bê guherandin."***

# Kurdî tune be, kurd jî tune ye




Leyla Denlî

**Di xurtkirin û geşkirina Kurdîtiyê de ziman şaxa herî pîroz û girîng e. Dilê welatekî zimanê wî ye. Em baş dizanin: 'Zimanê gelekî tune ye, gelê zimanekî heye'. Kurdî tune be kurd jî Kurdistan jî tune ye. Ji Celadet Bedirxan heta Mûsa Anter gelek rewşenbîrên Kurd bi vê rastiyê tevgeriyan. Herwiha bûn pêşeng jî ji bo her kurdekî. Di 1992'an de ji bo ev rastî bên cih, ji aliyê Mûsa Anter, Feqî Huseyn Saxniç û hwd. rewşenbîran ve Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê hat avakirin. Li hemberî înkar û asîmlasyona dewletê ev 22 sal e berxwedanek bêhempa ji aliyê kurdîhezên wek Zana Ferqînî, Ronayî Onen, Samî Tan li Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê tê dayîn. Enstîtu xebatên xwe didomîne û her sal li ser navê avakarê enstituyê Feqî Huseyn Saxniç xelata ziman dide. Îsal ev xelat hêjayî Mamoste Ronayî Onen hat dîtin. Em bejna xwe li ber wan û keda wan ditewînin û em hêvî dikin ji bo her kurdekî bibin mînak. Hevserokê Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê pirsên BasNûçe'yê bersivand. Em li ser ziman û rewşa ziman peyivîn.**

***BasNûçe - Gelo hûn dikarin hinekî li ser enstîtuyê bisekinin. Enstîtu kengî, ji aliye kê ve û bi çi armancê hate avakirin?***

**Samî Tan -** Enstîtuya Kurdî di sala 1992'an de 18'ê Nîsanê de di pêşengiya hinek rewşenbîrên mîna Îsmaîl Beşîkçî, Cemşîd Bender, Feqî Huseyn Saxniç, Mûsa Anter û gelek kesên din ve hate avakirin. Di wan salan de hebûna Kurdî, nasnameya Kurdî, çanda Kurdî qedexe bû. Li aliyê din jî gelê Kurd dest bi tekoşîna çekdarî kiribû û di salên 90'î de ev tekoşîn gihiştibû qonaxa serhildanên gelêrî. Li ser vî esasî gelek rewşenbîrên Kurd jî pêwîstî pê dîtin saziyên çandî û yên li ser ziman çê bikin. Enstîtuya Kurdî jî di van mercan de ava bû. Bi pêşengiya NÇM'yê Enstîtuya Kurdî ava bû û Rojnameya Welat dest bi weşanê kir di vê deme de. Serokê wê yî pêşîn Apê Mûsa (Mûsa Anter) bû. Piştî avakirina Enstîtuya Kurdî bi çend mehan Apê Mûsa bi destê qontrayan hat şehîtkirin. Piştî wê jî Enstîtuya Kurdî xebatên xwe berdewam kir. Berhem çêkirin, Qonferans li dar xistin, ew xebat îro jî berdewam in. Entîtuya Kurdî ji bo zimanê Kurdî bingehek ava kir. Di gel ewqas astengiyan, em dikarin bêjin Enstîtuya Kurdî ji bo perwerdehiya Kurdî bingehek ava kiriye. Di warê pêşxistina xebatên lêkolînan de, bi dehan pirtûk çap kirine di nav wan de; du ferhengên mezin hene, Ferhenga Gotinên Pêşiyan heye, seta Hîndekariyê heye, Dîroka Edebiyata Kurdî heye. Enstîtu xebatên bi vî rengî dike. Wekî din bi salan e Kovara Zend'ê derdixe. Zend, zêdetir giraniyê dide ser karên lêkolînî û akademik. Di warê çand, ziman û edebîyata Kurdî de weşanên xwe dike.

***Saziyên zimanê Kurdî ji bo perwerdehiya zimên bes in an na? Enstîtu tera vê yekê dike?***

Bi taybetî li bakur em qala 20 mîlyon kurdî dikin. Pêdiviya gel bi xebatên mezintir heye. Em qala perwerdehiya zimanê dayikê dikin. Niha xebatên ku em dikin têra dibistanekê nakin, divê em mezin bibin. Ji bo vê yeke jî gerek hebûna gelê Kurd bikeve binê qanûnekê, gelê Kurd bibe xwediyê statuyekê û li ser vê esasê perwerdehî bi zimanê kurdî pêk were, ji dibistanê heta zaningehê perwerdehî bi Kurdî bibe. Weke me gotiye, di salên 90'î de ev saziyên ku hatine avakirin armanca wan ew bû ku bibêjin, em hene, em tune nabin. Yanî hinekî armanca avakirina wan sembolik bû. Îro em ji wê qonaxê derbas bûne, êdî dinya alem tev dizanin ku Kurd hene. Di Rojhilata Navîn de bêyî Kurdan gav nayê avêtin. Kurd di Rojhilata Navîn de hêza herî dinamik û herî xurt in. Ji bo vê yekê divê zaningeh ava bibin, dibistan ava bibin û Kurd çarenûsa xwe bi destê xwe ava bikin.

***Divê projeyên bê avakirin bi çi awayî bin? Wek tê zanîn dixwazin dibistanên taybet ava bikin. Kî û bi çi armancê ew dê ava bikin, derfetên wan têra avakirinê hene?***

Hinek tişt beravajî dimeşe yan jî tevlihev dimeşe. Li gorî baweriya min divê ewil statuya gelê Kurd were qebûlkirin. Yanî hebûna gelê Kurd, nasnameya gelê Kurd were qebûlkirin Kurd ê pergala xwe ya perwerdehiyê bi destê xwe ava bikin. Yanî ji bo yî îro dewleta Tirk vê nake mixabin li gorî xwe hinek gavan diavêje û em bêjin di avêtina van gavan de hêvî û daxwazên gelê Kurd nade ber çavan, li gorî zanîna xwe li gorî dilê xwe dixwazin hinek gavan biavêjin. Îjar di vir de siyasetên me dê çi be? Li gorî baweriya min divê em wan gavan jî bi awayekî wekî di lîteratura kevn de sûîstîmalkirin hebû, digotin 'legalîte-î sûîstîmal' divê em jî van gavên dewletê sûîstîmal bikin. Çawa? Divê gav bi rasteqînî bên avêtin. Heger bi rastî li hemberî gelê Kurd, tekoşîna gelê Kurd, ziman, çand û nasnameya gelê Kurd êrîş tunebin, ku nexwazin xera bikin, em bêjin divê li ber wan em nebin asteng. Heta divê em ciwanên gelê Kurd teşwîk bikin ku biçin wan deran, bixwînin, lîsansê bixwînin, lisansa bilind bixwînin doktorayê bikin û xwe di qada akademik de pêk bînin. Siberoj ew ê zaningehên Kurdan vebin, zaningehên Kurdî vebin, ew ê dibistan vebin, ji me re mamoste lazim in, ji me re materyal lazim in, ji me re kadroyek gihiştî lazim e. Îro ev derfet hene, divê em van derfetan bi kar bînin.

***Hûn ne li dijî gavên ku dewlet diavêjin in, hûn dibêjin divê em li ser van gavan bisekinin da ku dewlet gavên baştir biavêje, ne wisa?***

Ji bo ev gav têkçûyî nebin divê em zorê bidin dewletê. Em nehêlin ku gavan li gorî dile xwe bi kar bîne, li dijî me bi kar bîne, li dijî gele Kurd li dijî nirxên Kurdan bîne. Li aliye din jî van xebatana em bêxwedî jî nehêlin, ev xebatana ev gavên ku dewletê avêtine em bêjin em têxin xizmeta tekoşîna gelê Kurd, em bixin xizmeta perwerdehiya zimanê Kurdî, bixin xizmeta gelê Kurd, ku Kurd xwe nas bike, nirxên xwe nas bike. Em bi vê hişmendiyê bi vê baweriyê divê nêzîkî meselê bibin û wekî çawa ez tim wê mînakê didim, Kemalîstan ji bo ku dîn kedî bikin, ji bo ku dînê Îslamê têxin xizmeta xwe, Îmam Hatîp vekirin. Îro tevgera îslamî li ser van Îmam Hatîp'an xwe bi rêxistin kir, îro dewletê bi dest dixin. Bi vî awayî Kurd jî van derfetana bi kar bînin xwe bi rêxistin bikin, qadroyên xwe bigihînin, bingeha perwerdehiya Kurdî ava bikin û tiştekî din jî heye, yanî heta ku sîstem wê yekê nebîne, ku di polîtîkayên asîmlasyonê bi ser nakevin û têk diçin, wê rêya perwerdehiya Kurdî venekin. Bibînin polîtîkayên wan yên asîmlasyonê bi tu awayî bi ser nakevin, hêviya wan divê nemîne ji asîmlasyonê, ji ber vê yeke jî Kurd hemû rê û rêbazan divê ji bo parastina ziman ji bo pêşketina zimanê xwe, gîhandina qadroyên xwe amedekirina materyalan divê xebatê bikin.

# Filmên xelatgir yên kurdî jî bê salon dimînin

**Piştî gelek zor û zehmetiyan fîlmên kurdan di gelek qadên navnetewî de bûn xwediyên xelatan. Li gelek deverên Kurdistanê dibistan û atolyayên sînemayê hatin vekirin. Her diçe ev qad li ber kurdan fireh dibe. Lê bi bûyîna van derfetan gelek zehmetî jî derdikevin pêş sînamegerên kurd. Gelek derhênerên Kurd, piştî ku fîlmê xwe dikşînin nikarin bo nîşandayînê salonê bibînin. Ji rayedarên dewletê nikarin di warê aborî de alîkariyê bistînin.**





Aziz Tekin

Ji wan fîlman yek jî fîlmê Ferît Karahan yê bi navê 'Derbûyîna ji Bihuştê' ye ku Xelata 50. Porteqala Zêrîn girtiye. Fîlm, jiyana du malbatên cihê nişan dide. Li hêlekê malbatek kurd heye ji Mûşê, li hêlek din malbatek tirk heye ji Stenbolê. Ayşe pir dixwaze here Stenbolê, lê piştî xwûşk û birayê wê tevlî refên gerîla dibin, ji vê xwesteka xwe poşman dibe û jiyana wê duguhere. Emîne endezyarek elektirîkê ye û di sazkirina avahiyekê de dixwebite. Birayê wê li leşkeriyê tê kuştin. Di avahîsaziyê de Emîne kurdan nas dike. Piştî Kurşatê temenê wî piçûk dimre Emîne berpirsiyariya birina Kuşad digre ser milên xwe. Malbata Ayşe jî bar dikin Stenbolê. Di nava rê de kêliyekê çevên Ayşe û Emîne li hev dialiqin. Fîlm bi herdû jiyanên paralel diherike. Fîlmê Derbûyîna ji Bihuştê vê heftê kete vîzyonê. Me bi Karahan re hevpeyvînek li ser fîlmê wî û li ser sinemaya kurdî çê kir.

***BasNuçê - Ferit Karahan kî ye? Tu dikarî behsa xwe bikî?***

**Ferit Karahan -** Ez di sala 1983'an de li Mûşê çê bûm. Min Zanîngeha Marmarayê qedand. Min di nav zanîngehê de jî karê sînemayê dimeşand. Min û Devran (Çakmak) bi hev re. Min kurtefîlm çêdikirin. Piştî wê, min alîkariya derhênertiyê kir. Paşê min reklam kişandin. Piştî ku kurtefîlm xelat sitand, min alîkarî ji bo fîlmê dirêj stand. Paşê min fîlmê dirêj çêkir. Fîlmê dirêj xelat sitandin, li Antalya li Îrlanda di çend festîvalan de. Wisa.

***Fîlmê we yê "Derbûyîna ji Bihuştê" Xelata 50. Porteqala Zêrîn girt. Di van dawiyan de piranî derhênerên kurd di mîhrîcanan de xelatan distînin, bi we ev girêdayî rewşa siyasî ye?***

Ne rewşa siyasî ye, ji ber êdî kurd dixwînin û dizanin. Zarokên kurdan êdî mektepê dixwînin. Min beşek dinê xwendiye li zanîngehê, lê wexta min zanîngeh xilas kir li ser karê sînemayê xebitîm. Ji ber ku zêde nin û zehf dixwînin. Yanî ji ber polîtîkayê nîne.

***Ango hin kes dibêjin filmên demî ne...***

Na. Dema min ev fîlm kişand, şer hebû li Tirkiyê. Ew dema pêvajoya aştiyê dest pê kiribû, qut bibû. Dema şer bû.

***Di sinemaya kurdî de mijar bi piranî siyasî ne û piranî derbarê pirsgirêkên bi dewletê re ne. Hûn vêya çawa dinirxînin?***

Di herdû kurtefîlm û fîlmê min yê dirêj de jî ev heye. Bi rastî ez jî dixwazim fîlmê eşq, macera, zarokan, western ku gişe bikin çêbikim, lê êşek heye di nava kurdan de. Êşek hezar salan. Em nikarin êşên xwe nebînin û tiştên dinê çêbikin. Rewşa polîtîk di nava jiyana kurdan da ye, tu nikarî ji hev biqetînî. Tu çi çêkî ew dê bibe polîtîk.

***Di fîlmê "Derbûyîna ji Bihuştê" de rewşa du gelan, di ser du malbatan re tê nîşandayîn. Xwestek, hezkirin, dijminatî û hwd. di nav hev de ye. Ew fîlm, dê ji bo hevfamkirina kurd û tirkan deriyekî vebike?***

Bi rastî armanca wî wisa ye. Ji bo kurdan û tirkan, ji bo ereban û tirkan, ji bo îrlandî û îngilîzan. Ji bo derîyekî nû, derîyekî em hevdû fêm bikin. Em di nava hevdû de nin, em dikarin pirsên xwe çareser bikin. Min ev fîlm ji bo wê yekê çêkir. Naçin nabînin.

***Di fîlmê we yê 'Beriya Tofanê' de Zehra dixwaze here dibistanê. Wekî ku hûn jî dizanin di tahayûla kurdan de dibistan bi dewletê ango bi navendê re yekbûyîn e. Di fîlmê we yê dawî de jî Ayşe dixwaze here Stenbolê ku bajarekî tirkan e. Hûn xwastekên van lehengên xwe çawa dinirxinin?***

Di 'Beriya Tofanê' de armanç ew bû dizanî. Min ji dewletê ra digot; tu dibêjî bila herin dibistanê, bila bibin xwandevan, bila bibin mamoste û tiştê din. Lê tu li ser rêya dibistanê jî mayin û bombeyan tije dikî, wan derdixî pêşiya zarokên kurd. Tu bi tirkî çêdikî, wan asmîle dikî. Armanca wî ew bû, tu dikarî wê hisiyatê bidiyê. Di vir da rastiya zarokên kurdan heye. Zarokên kurdan naxwazin bi kurdî xeber din, ji ber ku ev politikaya siyasiya tirkan e, bandora tirkan li ser kurdan heye. Di serê fîlmî de Ayşe dixwaze were Stenbolê lê di dawiya fîlmê de naxwaze. Tu birayê wî dikujî, xwuşk û birayê wî diçin dibin gerîla. Êdî naxwaze, tel bûye. Ku hûn zordestiyê bikin li ser kurdan, kurd nikare aşitiyê jî bikin. Di dawiyê de Ayşe naxwaze here. Ew sahne ew rewş hinek serkeftî ye di nava fîlm de, ez dikarim vêya bêjim.

***Hûn li kesekî 25 salî digerin bo lîstikvaniyê ku kurdî bizanibe. Aniha lîstikvanên ku kurdî zanin têra xwe hene?***

Zef zehmet e. Ez aniha nikarim lîstikvanekî baş yê şêst salî bibinim. Di fîlmê me de Hîlmî Abê leyîst. Kurdekî baş e lê ne lîstikvan e. Lîstikvanê kurdan yên baş çêbibin. Ez bêjim Gulîstan (Acet) xelat sitend, Rojîn (Tekîn) xelat sitend. Gulîstan li tu cihekî nelîstibû. Mîrza (Metîn) profesyonel bû. Ezîz (Çapkurt) wek min derhênerek bû, hevalekî min bû. Ez gelek memnûn im ji lîstikvaniya wan.

***Dema ku hûn film dikşînin, hûn rastî çi astengiyan tên?***

Astengî kiras guherandiye. Aniha raste rast nabêjin em naxwazin, ji alî aborî de astengiyan derdixin. Ku alîkarî nedin te, tu nikarî fîlm bikşînî, ku salon nedin te tu nikarî fîlmê xwe nişan bidî. Cara yekemîn e xelata herî baş didin kurdan. Par jî dan kurdekî, lê mijara wî ne ew qas politikaya kurdan bû, mijarek bûyerên di nava malbatekê de bû. Politikaya ekonomîk li ser kurdan bandorek e. Li Kurdistanê ji xwe girseyek ku wisa here sînemayê jî tune ye. Êvarê mêrik diçe qehweyê, naçe sînemayê. Ku here rojekê ew tenê here, rojeke din ew bi zarokên xwe û jina xwe re here. Ku bi zarok û jina xwe re çû, feodalîteya li wir bicîh bûye dê bişkê. Girêdayî sosyolojiya civakê ye. Em nikarin bêjin naçin sînemayê, wisa ne basît e.



**Astengî kiras guherandiye. Aniha raste rast nabêjin em naxwazin, ji alî aborî de astengiyan derdixin. Ku alîkarî nedin te, tu nikarî fîlm bikşînî, ku salon nedin te tu nikarî fîlmê xwe nişan bidî.**

# Bazirganiya bê sînor, sînoran radike


Cesim İlhan

**Iraq duyemîn hevparê bazirganiyê ya Tirkiyeyê ye. Li gorî daneyên fermî, ji sedî 70'ê a bazirganiya salane ku 12 milyar dolar e, bi Herêma Kurdistan re tê kirin. Hinardeya ku Tirkiye di 9 mehên pêşî ên sala 2013'an de ji bo Herêma Kurdistan pêk anî, li gorî heman serdema sala çûyî, teqrîben ji sedî 9 zêde bû û gihîşt 8 milyar 473 dolaran. Hinardeya ku di meha Adara sala 2014'an de hat pêkanîn jî, li gorî heman serdema sala çûyî, ji sedî 5,4 zêde bû û gihîşt 540 milyon 299 hezar dolaran. Herêm, ji hêla veberhênanê ve jî hê zêde bi avantaj e.**

Pêwendiyên bazirganî ên di navbera Tirkiye û Herêma Kurdistanê de, di 10 salên dawiyê de bi lezekê xurt bûn û li gorî daneyên fermî bi ser 10 milyar dolarî ket. Pispor balê dikişînin serê û dibêjin, heke bazirganiyên ku li derveyî tomarê mane jî bê hesibandin, bazirganiya Tirkiyeyê a bi Herêma Kurdistanê re salane digihîje zerengiya 13 milyar dolarî. Aborîzan Süleyman Yaşar ku dibêje dê di sala 2018'an de, digel bazirganiya dertomarê, qewareya bazirganiyê dê bigihîje 150 milyar dolarî û wiha didomîne; ji bo ku bazirganî xweşikî bê kirin, divê wek pêngava yekem di navbera her du welatan de hejmara deriyên sînor bên zêdekirin û wek dîtina xwe a takekesî jî got: Li gorî min divê sînor bên rakirin.

Iraq duyemîn hevparê bazirganiyê a Tirkiyeyê ye. Li gorî daneyên fermî, ji sedî 70'ê a bazirganiya salane ku 12 milyar dolar e, bi Herêma Kurdistan re tê kirin. Hinardeya ku Tirkiye di 9 mehên pêşî yên sala 2013'an de ji bo Herêma Kurdistan pêk anî, li gorî heman serdema sala çûyî, teqrîben ji sedî 9 zêde bû û gihîşt 8 milyar 473 dolaran. Hinardeya ku di meha Adara sala 2014'an de hat pêkanîn jî, li gorî heman serdema sala çûyî, ji sedî 5,4 zêde bû û gihîşt 540 milyon 299 hezar dolaran. Herêm, ji hêla veberhênanê ve jî hê zêde bi avantaj e.



**Serokê Şaxa İzmirê ê Komeleya Karsazên Şêrên Enadoluyê, Zekeriya Hazırbulan**
Vebûna deriyên nû pir girîng e. A niha, bes deriyek heye li ser sînor. Ev yek jî dibe sedem ku dora derbasbûnê dirêjtir be. Ji ber xêrgeleya li derî, dema spartina tişt û malên bazirganiyê bi ser dikeve. Bazirganiya Tirkiyeyê a sala 2012'an, li dor 12 milyar dolaran bû. Em pêşbînî pê dikin ku dê bi vebûna deriyên nûtir re, ev jimar bibe du car.

Her çi qas ji bo Iraqê veberhênanên biyaniyan girîngiya xwe hebe jî, ji ber fikara ewlekariyê û çetiniyên burokratîk, ne pêkan e ku mirov biyaniyan di her sektorê de bibîne. Veberhênan, herî pir li Herêma Kurdistanê ku pirsgirêkên ewlekariyê lê nîn e, zêdetir in. Tirkiye, digel Welatên Kendavê, wek welatê sereke ye ku veberhênanê dike bo Kurdistanê. Ji Tirkiyeyê kêm zêde 1600 fîrma li herêmê bi ger ketiye. Veberhênana Tirkiyeyê a li Herêma Kurdistanê jî, li gorî daneyên îroyîn, bi ser 1,1 milyar dolarê ketiye. Li herêmê, projeyên veberhênanên stratejîk, ên wekî rêyên bejahiyê, tunel, balafirgeh, otêlên mezin, navendên kirînûfirotinê, avahiyên xizmetê, ji alî fîrmayên Tirkiyeyê ve tê çêkirin. Çêkirina Balafirgeha Navneteweyî a Erbîlê ku di sala 2011'an de bi ger ket, fîrmayên Tirkiyeyê hildan ser milê xwe. Herçî gelek projeyên stratejîk ên banavayiyê, ên wekî avahiya Dadgeha Erbîlê, avahiya Parêzgariya Erbîlê, santralên elektrîkê, avahiyên zanîngehê, ji hêla fîrmayên Tirkiyeyê ve tên meşandin.

### Jİ KOZMETÎKÊ HETA ALAVÊN PAQİJİYÊ

Fîrmayên Tirk, ji xurdemenî heta bi têkberên spî, ji alavên paqijiyê heta bi berhemên kozmetîk, gelek berhem difiroşe Herêma Kurdistanê. Deriyê Sînor ê Xabur ku di rojekê de 2 500 amraz jê derbas dikin, ji ber ku êdî têrî pêwistiya heyî nake, vekirina deriyên sînor ên dîtir ketiye rojevê. Li gorî protokola ku aliyên têkildar îmze kirine, dê sê deriyên sînor ên nû vebin. Aborîzan Süleyman Yaşar, balê dibe ser û dibêje, "Herêmeke wekî Kuveyt û Katarê çêbûye" û van gotinên xwe li ser dike, "Heke em hem ji bo Kurdistan hem jî ji bo Tirkiyeyê, bi beranberê lê binêrin, ev yek hêmanek e ku dê halxweşiyê zêdetir bike."

Aborîzan Cemil Ertem jî balê dibe serê û dibêje, di serî de sektora banavayiyê, di warê aboriyê de gelek sermiyana Tirkiyeyê heye li Kurdistanê û wiha didomîne: ez li ser wê fikrê me ku di serdemên pêşiyê de, di warê Sanayiya Berevaniyê de pêwendiyên di navbera Kurdistan û Tirkiyeyê de dê xurttir bibin. Ez wer difikirim ku dê di vî warî de jî hinardeyên Tirkiyeyê ên hêjayî gotinê pêk bên. Berêxwedana welatên dereke a Kurdistanê û avakirina pêwendiyên xwe ên aboriyê ên di ser Derya Spî re, bi navbeynkariya Tirkiyeyê pêk tê. Li gorî min, ev destpêkerî, ji bo hemû welatên Rojhilata Navîn pêkaneke mezin e.

Ertem dibêje, "Divê deriyên sînor ên nû bên vekirin", û pêşbîniya xwe ya bo siberojê jî dadixuyîne û dibêje: Ez wer difikirim ku di siberoja nêzik de Iraq di sê pergalên hîmî de bidome. Yek ji van hêmanên hîmî Herêma Kurdistanê ye. Avabûnek wisan ku dê Dewleteke Serbixwe a Kurdistanê hemû rayeyên xwe bi kar bîne. Ev avabûn bi Tirkiyeyê re têkeve pêwendiyên cidî ên li ser siyasî û aboriyê. Ez dibêjim, dê pêvajoya aştiyê a li Tirkiyeyê jî kartêkeke pozîtîv li vê yekê bike.

### KURDİSTAN YE'YÊ DERBAS KİR.

Ji nîvê zêdetir ên veberhênerên li herêma Kurdistanê, karsazên Tirk in. Herêma Kurdistan, ji hêla pêkanînên aborî ve, her ku diçe di şûneke ji Yekîtiya Ewrûpayê girîngir de cî dide xwe. Tirkiye di roja îro de, piştî Almanyayê, herî zêde hinardeyê bo Herêma Kurdistanê dike. Tirkiyeyê, ji şênbûna Komarê bi vir de ye, bi gelek welatên Ewrûpayê ên wekî İngilistan, Fransa, Holande, Belçîka, Denmarka re pêwendiyên li ser aboriyê danîne, rewşa wê di van deh salan de, ku bi Kurdistanê re pêwendiyên aborî û siyasî danîn, guherî. Herçî Îsraîl e, ku ji bilî Almanya, welatên Ewrûpayê ên dîtir û Tirkiye ji sala 1949'an bi vir de ye pê re pêwendiyên bazirganiyê danîne, li paş Kurdistanê man.

Balyozxaneya Erbîlê di sala 2010'an de vebûye. Pêwendiyên erênî kartêka xwe li bazirganiya di navbera her du welatan de heyî jî kiriye. Bankaya Ziraatê, yekem bankaya tirkan e ku li Erbîlê vebûye; û di van 3 salên dawiyê de jî, Vakıfbank, Bankaya İş, Albaraka Türk û Bankasya dest bi bigêrketinê kirine.

### ÎMAJA BERHEMÊN TİRKAN BİKALÎTE YE

Şîrketên tirkan ku hejmara wan di ser 1.600'î re ye, li Herêma Kurdistanê bi awayekî tomarkirî, kar dikin. Mirov dikare li gelek cî û warên welêt, ji adanê heta bi tekstîlê, ji mobîlyayê heta bi têkberên spî, ji kemnika şil heta bi sabûnê, ji deodorantê heta bi macûna diranan, rastî berhemên ku navê markeyên tirkan li ser e, were. Di nav welatên ku Tirkiye hinardeya kozmetîkê bo wê dike de, Herêma Kurdistanê di rêza yekem de ye. Di nava gel de îmajeke berbelav heye ku dibêjin, li gorî welatên cîran û welatên Rojhilata Dûr, berhemên Tirkan bikalîtetir e.

### HER SALA KU DİÇE QEWAREYA BAZİRGANİYÊ BÊTİR DİBE

Ji herêma Kurdistanê di van 10 salên dawî de, bi tevayî 1 milyar 226 milyon dolaran hawirde hat kirin, lê beranberê wê, di van 5 salên dawî de, hinardeya ku ji Başûrêrojhilatê bo Kurdistanê hat kirin, bi teqrîben bi zêdebûneke ji sedî 43'yan, ji 2 milyar 261 milyon dolarê li 3 milyar 242 milyon dolaran zêde bû. Di vê serdemê de, teqrîben ji sedî 45'ê tevdeka hinardeya ku bo herêma Kurdistanê hat kirin, ji Herêma Başûrêrojhilatê hat pêkanîn.

Fîrmayên tirkan, di sala 2003'yan de li Kurdistanê bi qasî 242 milyon dolaran kar wergirtin, ev jimar di sala 2004'an de teqrîben 4 caran zêde bû û giha 1,2 milyon dolaran. Di salên



**Serokê Lijneya Rêveberiyê a Komeleya Sanayî û Bazirganiyê a Amedê, Ahmet Sayar**
Bazirganiya ku di navbera Tirkiye û Herêma Kurdistanê de her ku diçe baştir dibe, digel rehenda aboriyê, ji hêla nêzikbûna çandî û civakî ve jî, hêja û girîng e. Kurdistan, piştî Almanyayê, di rêza duyem de ye ku Tirkiye hinardeyê bo wê dike, lê gava mirov daneyan dide ber rêjeya gelheya welatan, Kurdistan di rêza yekem de cî digire. Divê em delîveyên çûnehatê û binesaziya xwe a lojîstîk ji her du aliyan ve jî xurttir bikin. Divê pirên ku pîlansaziya avakirina wan hatiye kirin û ji sê şirîdên çûnê û ji sê şirîdên hatinê pêk nê û dê barê Xabûrê siviktir bikin, bi lezekê bên avakirin.




2005 û 2006'an de ji ber pirsgirêkên ewlekariyê, veberhênan kêmtir bûn. Di sala 2008'an de bihayê karên ku hatin wergirtin, giha 1,4 milyar dolaran. Fîrmayên banavayiyê ên Tirkan, di sala 2011'an de, teqrîben 1,8 milyar dolaran kar wergirt û beranberê vê jî di sala 2012'an de berdêla projeyên hatî wergirtin, giha 4,4 milyar dolaran. Tê gotin ku, bi taybetî fîrmayên ku li bajarê Entabê berkêşanên adaniyê dikin, li Kurdistanê, jimarên firotina xwe pir zêde kirine. Bajarê Entab ku teqrîben 2,3 milyar dolaran hinardeyê bo Herêma Kurdistanê dike, bi tena serê xwe, hinardeya Tirkiyeyê a bo herêmê pêk tîne.

Li herêmê, di warê avabûnê de, xebatên avahî, qada bazirganiyê û binesaziyê bi boşahî didome û di vî warî de hin fîrmayên banavayiyê yên ji Amedê jî kar dikin. Ji ber ku karkerên hoste û karzan zêde peyde nabin, hosteyên banavayiyê yên ji Amed û bajarên derdorê tên, di banavayiyên li vê derê de dixebitin. Hinardeya ku ji Amedê bo Kurdistanê jî tê kirin bi lezekê zêdetir dibe. Hinarde, di navbera salê 2008-2012'an de, bi leza zêdebûnê ya teqrîben ji sedî 40, di sala 2012'an de giha 107,2 milyon dolaran. Hinardeya ku bo Herêma Kurdistanê tê kirin, ji nîvê zêde par e ji hinardeya ku Amed pêk tîne.

Veberhênanên li herêma Kurdistanê, li gorî sala çûyî ji sedî sed zêdetir zêde bû. Li herêmê, veberhênana ku di sala 2012'an de 5 milyar 985 milyon dolaran bû, di sala 2013'an de giha 12 milyar 419 milyon dolaran. Di navbera 2006 û 2013'an de, bi tevayî 37 milyar 29 milyon dolaran veberhênan bo herêmê hat kirin. Ji bo 644 projeyên veberhênanê, li Erbîl, Silêmaniye û Duhokê, bi tevayî bi qasî 38 hezar 712 donim erd hat terxankirin. Bi 21 milyar 33 milyon dolaran herî zêde veberhênan bo Erbîlê hat kirin, Silêmaniye bi 11 milyar 427 milyon dolaran di rêza duyem Duhok jî bi 4 milyar 569 milyon dolaran jî di rêza sêyem de cî girt. Di veberhênanan de rêjeya mezinbûnê di sala 2006'an de 1.18 bû lê di sala 2013'an de giha 33.54'an. Herêma Kurdistanê, ji ber ku ewle ye, ji gelek herêmên Iraqê koç bo wê derê tê kirin û loma jî ji bo ku



**Serokê Komeleya Karsazên Wanê,**
**Ahmet Fatih Hatunoğlu**
Di Adara sala 2014'an de, civîneke ku birêz Nêçîrvan Barzanî jî tev lê bû, çêbû. Di vê civînê de, di barê pêşketina herêmî û pêşxistina pêwendiyên bazirganiyê ên bi domdarî ku bi herêma Kurdistanê re pêk tê de, li ser xalên girîng hat sekinandin. Em bi awirekî erênî li vê pêwendiya aborî ku di navbera Tirkiya û herêma Kurdistanê de heye û bi lezekê geş û mezintir dibe, dinêrin û wê stratejîk dibînin. Dê pêşketinên aborî, kartêkên erênî li pêvajoya aştî û biratiyê ku hewl tê dayîn ku li herêmên Rojhilat û Başûrêrojhilatê bê avakirin, bike.

hewcetiya xaniyên têdemayînê bê qedandin, avahiyên nû tên lêkirin.

Sektora avahiyên yekemîn veberhênan e ku bo herêmê tê kirin. Ji bilî vê, ji sedî 35'ê di warê banavayiyê de, ji sedî 31 di warê sanayiyê de, ji sedî 15 di warê turîzmê de, ji sedî 7 di warê bazirganiyê de; û di warên tenduristî, banke û kiştûkaliyê de jî ji sedî 2 veberhênan hat kirin. Di 7 salên dawiyê de, bi tevayî 316 milyar dînarên Iraqê, ji bo binesazî, av, elektrîk û çûnehatê, wekî lêçûnên xizmetê, hat mezaxtin.

Bi dorê, Îran û Çîn dan dû Tirkiyeyê. Sedema ku Tirkiye di rêza yekem de hat tercîhkirin, bikalîtebûna hilberînên tirkan e.

Rêhewayên Tirk, Atlasjet û Rêhewayên Pegasus, di hefteyekê de 24 caran balafirên xwe dişînin Erbîlê ku mezintirîn bajarê herêmê ye. Li balafirgehê, dîrega alaya Tirkiyeyê di serê hemû dîregên alayên welatên dîtir de cî digire.

Li Erbîla ku bajarekî şantiyeyê ê mezintir e, kamyon û TIR ên ku plakayên Tirkiyeyê li ser in, ji hemûyan zêdetir in. Fîrmayên Tirk, tu yê bêjî li Erbîlê Dubaiyeke dîtir ava dikin. Avahî tên lêkirin, rê tên çêkirin. Markayên Tirk ên wekî Ülker, Vestel, Arçelik, Beko, İstikbal, Vakko, Divan, Alfemo, Merinos û Aksa di reklamên bîlboardê de cî didin xwe.

## MARKAYÊN TİRKAN Lİ KOLANÊN KURDİSTANÊ NE

Ji Vakko heta bi Beymenê, ji Ülkerê heta bi Vestel û Arçelikê, markeyên Tirk, li gelek bajarên Herêma Kurdistanê kolan xemilandine. Karpêdana ku fîrmayên Tirkan peyde kiriye ji 80 hezarî zêdetir e. Li Erbîlê, di 5 salên dawiyê de, 10 navendên kirînûfirotinê vebûn. Ji sedî 80 kargehên di hundirê wan de an ji hêla fîrmayeke tirkan an jî ji hêla rahijmendên ku ji Tirkiyeyê hatine, tên gerandin.

Malên tirkan li herêma Kurdistanê

Li herêma Kurdistanê hinardeya bi 22 milyaran, ku di sala 2012'an de pêk hat, bi qasî 13 milyar dolarên wê ji Tirkiyeyê hat kirin. Rahijmendên tirk, otêlên li Kurdistanê dişuxulînin û xwediyê mezintirîn navendên kirînûfirotanê ne. Ji 50 hezarî zêdetir hevwelatiyên tirk, di serî de sektora banavayiyê, di gelek sektorê de kar dike û li herêmê tirk di warê banavayî û bazirganiyê de bi rêjeya ji sedî 70 serdest in. Qewareya veberhênanên ku şîrketên tirkan bo aboriya Kurdistanê dikin bi ser 20 milyar dolarî ketiye.

## PİRA NÛ A Lİ XABURÊ

Protokola ku pêşbînî dike ku di navbera Xelîl Îbrahîm û Deriyê Sînor ê Xaburê de, pireke nû bê avakirin, ji hêla parêzgarên Şirnex û Duhokê ve hat îmzekirin. Banavayiya pira ku, ji 3 şirîdên çûnê û ji 3 şirîdên hatinê û bi tevayî dê ji 6 şirîdan pêk bê, bi hevkariya Tirkiye û Kurdistanê bê çêkirin. Deriyê Sînor ê Xaburê ku di rojekê de 2 hezar û 500 amraz jê derbas dibe êdî têrî hewcetiyê nake. Gava derbasbûna TIR'an lez bigire, dê bazirganiya ser sînor a di navbera du welatan de geştir bibe û pêwendiyên di navbera Tirkiye û Kurdistanê de heta tu bêjî bes xurttir bibe. Ji bo 5 deriyên ser sînor ku dê di navbera Tirkiye û Kurdistanê de bê vekirin, protokol hatine îmzekirin. Wekî dî jî, ji 18'ê Nîsanê bi vir de ye, ji bo derbasbûna ji Deriyê Sînor ê Derecikê ku li ser sînorê Kurdistanê û li herêma Derecikê ye û bi ser bajaroka Şemzînanê ve ye, destûr tê dayîn.

# "Çareserî federa



**Hilbijartinên herêmî ku di 30'yê Adarê de çêbûn û ji niha ve di dîroka siyasî ya Tirkiyeyê de bandor a xwe diyarkir, bêguman wê demeke dirêj bê nîqaşkirin. Hilbijartinên ku ji bo li welêt, ji bo pênc salan rêveberiyên herêmî bên diyarkirin hatin kirin, veguherî qada bi hev re hesab dîtineke kûr û berfireh.**
**Encamên hilbijartinê, qadên ku nelihevî hebûn di wan de zêdetir kirin û aramkirina girjbûna ku di jiyana siyasî de heye li aliyekî, hê kûrtir kir. Hilbijartinên 30'yê Adarê ku dê hê demeke dirêj wek mijara sereke di rojevê de bimîne û di pevketina ku derbar sîstema siyasî a li Tirkiyeyê de rengekî xwe yî qayîşkêşanê heye, ji aliyê kurdan ve jî encamên girîng derxistin holê.**

**Hemin ku lêgerîna sîstemeke nû ya siyasî ku kurdan naxe ber hesab, nikare bigihe encamekê, girîng e ku mirov encamên hilbijartinên herêmî ji hêla partiyên kurdan ve binirxîne. BasNûçe'yê, di derbarê encamên hilbijartinê û pêvajoya çareseriyê, bi Serokê Giştî yê Partiya Maf û Azadiyê (HAKPAR) Kemal Burkay re dîtin û nirxandinên wî axivî.**

*Serokê Giştî yê Partiya Maf û Azadiyê (HAKPAR) Kemal Burkay*



Yeter Polat

***Hûn encamên hilbijartinê, serê pêşîn ji aliyê kurdan ve, çawa dinirxînin?***

Dengên BDP'yê zêde nebûn, kêm bûn. Mirov dikare beşek jê bi rûdawa HDP'ê ve girê bide. Li alî rojavavayê wekî HDP ketin hilbijartinê. Digel dengên ku bi HDP'ê re hatine girtin, dibe ji sedî 6,1. HDP partiyek e ku piştî tifaq bi partiyên din ên çepgir re hatiye danîn, ava bûye. Bi ya min encama ku dihat payîn derneket. Herçî HAKPAR e... Ev car duyem e em tev li hilbijartinên herêmî dibin. Me di hilbijartinên 2009'an de li dora 26 hezarî deng girtiye. Em di hilbijartinên 2014'an de derketine 52 hezarî. Zêdebûnek heye lê belê em vê bes nabînin, em li benda encameke baştir bûn. Me li Muşê şaredariya navçeyek qazanc kir.

Taybetiyeke vê hilbijartinê heye. Berberiyeke no û dijwar pêk hat. Berberiyeke ku ji ber polîtikayên ku AK Partî di dema hilbijatinan de meşand, pêk hat. Dengê hilbêjêran, zêdetir li dora AK Partî û li dora partiya ku li hember wê û xurt xuya dike, li hev kom bû. Wekî mînak, li rojavayê pêşbazî di navbera AK Partî, CHP-MHP'yê de, li bajarên kurdan jî di navbera AK Partî û BDP'yê de pêk hat. Ev hilbijartin, ji hêlekê ve, ji bo AK Partî bû meseleya man û nemanê. Beşek ji hilbijêran got bila AK Partî winda bike, çi dibe bila bibe. Gelek mirovên ku piştgiriya me dikir, an ji bo ku AK Partî winda bike dengê xwe da an jî ji bo ku winda neke da.

***Ji hêla kurdan ve, dengên ku bi tevayî hatine girtin, serkeftin e an na?***

Ez ne bawer im ku guherîneke zêde çêbû. Hem ji hêla me hem jî ji hêla BDP'yê ve. Li erdnîgara kurdan, ji berê de, pêşbazî di navbera AK Partî û BDP'yê de çêdibû. Dîsan wisan bû. Hevkêşe wekî xwe dimîne. Piraniya kurdan hê berê xwe nedaye partiyên kurdan. Kurd, ji mêj ve ye, dengê xwe dide partiyên pergalê an jî partiyên ku mîna ku partiyên Tirkiyeyê bin xuya dikin. AK Partî bes yekê ji wan e. CHP jî heye, tew cî bi cî dengê xwe dide MHP'yê jî. Dengê xwe dide partiyeke wisan ku divê qet nediyê.

***Bi ya we sedema vê helwesta hilbjêrên kurd çi ye?***

Heke em qala tevgera welatparêz a kurd dikin, heke em qala tevgerên siyasî ên bihişmend û rêkxistî ku mafên kurdan diparêzin, dikin, wate ew e ku hê jî van tevgeran nekariye xwe li beşeke mezin ji kurdan bidin qebûlkirin. Em jî tê de. Di serî de ji hêla BDP'yê ve jî wiha ye.

Siyaseta kurdan ji aliyê BDP-PKK pênayê, em jî hene, hinekên dî jî hene, aliyên Îslamî hene. BDP'ya ku wekî siyaseta xurttir a kurdan tê nîşandan, hê jî nikare dengê piraniya kurdan bigire. Divê sedemên vê hebin. Sedema sereke hevnegirî ye. PKK tevgereke wisan e ku ji avabûna xwe bi vir de ye şaşîtiyên mezin kirine, ew nikare bi tena serê xwe nûneriya kurdan bike.

BDP tevgerek e ku dibêje "Öcalan vîna me ye." Şaşîtiya mezin jî ev e. Öcalan bes kesek e. Çênabe ku tevgereke siyasî, gelê kurd ji kesekî re bêje vîna min e. Çi bi demokrasî re li hev dike, çi bi çanda demokratîk re li hev dike, çi jî rast e. Polîtîkayên PKK'yê li gorî ciyê ku lê ye û li gorî helûmercan tim guheriye. Kî kontrola Îmraliyê bike ew di heman demê de kontrola Öcalan jî dike. Duh Serkana Giştî bû îro MÎT e. Lewre jî, şanîdana Öcalan a wekî vîna gelekî, handîkapeke mezin e.

> **Xweserî çi ye? Demokratîka wê çi ye? A rastî, têgîneke wekî "Xweseriya Demokratîk" di termînolojiya siyasî de tune ye. Kêşeya kurd bêyî ku mirov xwe bi axê ve girê nede, çareser nabe. kurdan welatek, dîrokek û zimanek heye. Digel hemû birînên ku di wan de çêbûne kurd xwediyê van hemûyan in.**

***Gelo berfirehkirina qada siyaseta kurd a di rêveberiya herêmî de, dikare bibe karakterek hêsanker?***

Di çareseriya pirsgirêkê de encamên hilbijartinê zêde tişt naguherînin. Bi ya min divê mirov li polîtîkayên aktorên esasî binêre. Yek jê hikumet e. Gelo di siyaseta hikumetê a ji bo çareseriya pirsgirêka kurd de guherînek heye? A niha tiştek wisan xuya nake. Gelo projeke wê heye? Projeyeke wê a dorfireh, ew jî tune? Baş e, gelo a BDP'yê heye? Tune. Projeya BDP'yê a ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd, xweseriya demokratîk e. Li gorî me, ev yek di mijara çareseriya pirsgirêka kurd de têr nake û pûç e. Pirsgirêka kurd bi xurtkirina rêveberiyên herêmî nayê çareserkirin.

Pirsgirêka kurd pirsgirêkeke neteweyî ye. Pirsgirêka gelekî ye. Lewma jî, pirsgirêkek wisan e ku divê mafên hîmî ên kurdan bê nasandin.

# syona tirk û kurdan e”

***Daxwaza xweseriya demokratîk ku derdora BDP'yê dike, dikare bê realîzekirin?***

Ji berê de dibêjin, di xweseriya demokratîk ku em dixwazin de, daxwazeke li ser axê tune ye. Ne hewceyî van sînoran e, çi gotin e. Dê zimanê dayikê dîsan tirkî be. Xweserî çi ye? Demokratîka wê çi ye? A rastî, têgîneke wekî 'Xweseriya Demokratîk' di termînolojiya siyasî de tune ye. Xweserî Kurdiya otonomiyê ye.

Tiştekî wekî xweseriya demokratîk tune ye, tiştekî wekî xweserî heye. Xweserî bi du cureyan e; xweseriya çandî, xweseriya herêmî. Em bêjin beşek ji mirovan mafên xwe ên çandî bi kar tîne. Ev xweseriya çandî ye. Beşek diyarkirî jî, ku navê wê xweseriya herêmî ye, xweseriya ku di herêmeke cografîk de pêk tê ye. wekî mînak li Qeebecê xweseriya herêmî heye. Îro li Rusyayê, herêmên federal hene, herêmên xweser hene. Em bêjin li Spanyayê herêmên otonom hene, wekî mînak herêma Baskê. Wekî Katalanan. Tiştê ku ev heval dibêjin, ne xweseriyeke wiha ye. Ew dibêjin, ax tune ye. Heke xweserî hebe divê cografyaya wê jî hebe. Hûn ê bêjin, em ê li van bajaran ku kurd pir in tê de, xweseriyê îlan bikin. Wê hingê dê sînorên wê jî hebin. Hem dê axa wê hebe hem jî sînorên wê lê dê di nava dewleta Tirkiyeyê de be ev xweserî. A duyem; dê zimanê fermî tirkî be. Çima? Kurdî zimanek e ku 20-25 milyon kes pê diaxive. Heke hûn bajarên dî jî ku kurd tê de pir in têxin ber hesab dîsan gelheke di ser 10 milyonî re heye. Hûn ê li vir daxwaza xweseriyê bikin dê zimanekî wê yî fermî jî tunebe, çima? Ev yek ji hêla kurdan ve xapandina bi derewê ye.

***Pêvajoya hevdîtinê ku di navbera KCK û hikumeta AKP'yê de dest pê kiriye, berê wê bi ku ve ye?***

KCK îlegal e. Rêxistineke legal a bi navê KCK tune, ne wisan? Gelo çênabe ku di navbera hikumeta tirk û KCK'yê de hevdîtin pêk bê? Dibe ku pêk bê. Dibe ku di navbera hikumet û PKK'yê de jî pêk bê, gava mirov bala xwe didiyê, tê dîtin ku ev hevdîtin hene. Dibe ku ev be, hikumet ji bo ku çek bên danîn dikare bi PKK'yê re hevdîtinan çêke. Dikare bi KCK'yê re jî hevdîtinê çêke û dibe ku ev hevdîtin li ber çavê her kesî pêk neyên. Dibe ku li paş perdeyan çêbin ev hevdîtin; ew ê bêjin, çekan deynin, ew ê jî hin şertan bidin pêş. Û dibe ku li hev jî bikin û vê yekê li raya giştî aşkera bikin. Ev pêkan e. Lê heke ku pirsgirêka kurd bê çareserkirin, bi çêkirina hevdîtinên li paş perdeyan a bi KCK û PKK re, çareser nabe. Divê hem ji raya giştî a Tirkiyeyê re û hem jî ji dinyayê re vekirî be û muxatabê vê yekê ne bi tena serê xwe PKK ye ne jî KCK ye û ne jî Öcalan e. Heke hikumeta tirk dixwaze vê pirsgirêkê çareser bike divê mafên hîmî ên gelê kurd nas bike û bide wan.

***Ji ber ku di pêvajoya çareseriyê de statuyeke zagonî tune BDP ji vê bi gazinc e, di vî barî de, gelo aliyê kurd di demeke nêz de wekî muxatabê fermî bê qebûlkirin?***

Heke hevdîtin bi PKK û Öcalan re tên kirin, BDP jî bes nameyan dibe û tîne, ev yek ne pir rewşeke xweş e. Aliyên hîmî û rastî, partiyên legal ên wekî BDP û HAKPAR in. Hikumet dikare bi me re hevdîtinê pêk bîne. Dibe ku di vê hevdîtinê de aliyê sêyemîn jî hebe, wekî mînak di biwara navneteweyî de, dibe ku nûnerê NY hebe di nav hevdîtinan de, em wekî gelê kurd daxwaza çi dikin, hikumeta tirk çawan li van daxwazên me dinêre. Divê wiha be lê belê ne wiha ye. Bi Abdullah Öcalan re hevdîtin tê kirin. Ne azad e, girtî ye. Em hê çêtir dikarin berevaniya daxwazên gelê kurd bikin. Jixwe em wisan jî dikin; em dibêjin, federasyona li ser hîma wekheviyê.

> **Ez federasyoneke tirk û kurdan difikirim. Rastiya Tirkiyeyê ev e. An na, 10 dewletên federal çênabin.**

***Pêşniyaza we federasyoneke cografîk e, hûn alayeke cuda, herêmeke ku sînorên wê diyarkirî ne dixwazin?***

Em ji bo gelê kurd, li ser hîma wekheviyê, digel gelê tirk federasyonê dixwazin. Em dikarin digel hev bijîn. Yanî em nabêjin dewleteke kurd a serbixwe. Çi ye federasyon? Me ev ji nû veneda, li gelek ciyê dinyayê heye. Li Swîsreyê heye, li Belçîkayê, li Rusyayê, li Çînê, DYE federal e. Helbet pirsgirêka kurd bêyî ku bi axê ve bê girêdan, nayê çareserkirin. Welatekî kurdan, ziman û dîrokeke wan heye. Digel hemû birînên ku di wan de çêbûye a niha ev hemû hene Em parastina jiyîna digel hev a li Tirkiyeyê dikin.

Em dikarin di vê yekê de bi ser bikevin, ev yek girêdayî reftarkirina bi bînatî (common sense) a li her du aliyan e. Heke aliyek wekheviya aliyê dî qebûl neke, çewisandinê pêk bîne, helbet çênabe. Çareseriya federal çareseriyeke li ser hîma wekheviyê ye. Li cografyaya ku kurd tê de piranî ne, yanî li Kurdistanê, Kurdistan dê bibe herêmeke federal. Ew ê rêveberiya xwe a herêmî bi hilbijartinê diyar bike, dê hikumeta herêmî û parlementoya herêmî hebe. Em bêjin, Amed dê bibe navenda vê hikumeta herêmî. Wekî Erbîlê. Dê alaya wê hebe, sînorên wê hebe. Zimanê wê î fermî kurdî be. Li Tirkiyeyê, hem tirkî û hemî jî kurdî bibe zimanê fermî.

***Hûn federasyonê ne tenê ji bo kurdan, ji bo hemû gelên ku li Tirkiyeyê dijîn, dixwazin?***

Ez federasyoneke tirk û kurdan difikirim. Rastiya Tirkiyeyê ev e. An na, 10 dewletên federal çênabin. Du gelên esasî hene, tirk û kurd. Ji alî piraniya gelheyê ve, kurd parek ji sê paran hene. Hûn nikarin ji bo gelên dî vê rêjeyê bêjin. Li herêma Antakyayê Ereb hene, li Mêrdînê, li Sêrtê hene, ne ku ez wan kêm dibînim, ew li ciyên ku lê dijîn dikarin li gorî gelheya xwe rêveberiyên xwe ên herêmî ava bikin, lê heke gelheya wan têr bike, lê belê teqez divê karibin mafên xwe ên çandî bi kar bînin. Li Kurdistanê gelek heye bi zazakî diaxive, di vê wateyê de divê wek çandî karibin zazakî bi kar bînin. Zazakî zaraveyeke kurdî ye lê divê karibin bi serbestî bi kar bînin. Divê dibistanên wan hebe. Ez nabêjim tekane koma etnîk a li Tirkiyeyê kurd in. kurd gelek e. Gelek e ku cografyayeke wê a berfireh, zimanekî wê yî berfireh, gelheyeke wê a berfireh heye. Ji bilî tirkan, tu yek jê jî ne wekî vê ye. Mezintirîn pirsgirêka Tirkiyeyê, pirsgirêka kurd e. Pirsgirêka kurd, ancax dikare li ser hîma wekheviyê û bi çêbûneke federasyonê çareser bibe, laz, ereb û çerkez jî dê mafên xwe ên çandî bi dest bixin. Li ciyên ku wek piranî ne dikarin xwe bi rê ve bibin. Lê ev yek nabe federasyon. Belkî dikare bibe herêmên biçûk ê xweser.

***Senaryoya we ya derbarê hilbijartina serokkomariyê de çi ye?***

Em di pevçûnê de ne aliyek in lê ji aliyekî ve jî ciyek heye ku em lê alî ne. Em aliyê demokrasiyê ne, em dixwazin bila Tirkiye bibe welatekî demokratîk. Em di pevçûna ku di navbera AK Partî û cime'etê de diqewime, ne aliyek in, em dixwazin bila Tirkiye bibe welatekî demokratîk. Heke Tirkiye karibe pirsgirêkên xwe çareser bike dê karibe bibe demokratîk jî. Divê di serî de pirsgirêka kurd û Elewiyan çareser bike, divê makezagoneke nû çêke. Û divê demokrasiyeke di standarda Ewrûpayê de bê avakirin. Divê bi Yekîtiya Ewrûpayê re bi yek bibe, em vê dibêjin. Ne pêkan e em wek partî ji bo hilbijartinên serokkomariyê endamek nîşan bidin; ew hêza me tune. Em ê çawan tevbigerin, ev yek girêdayî endaman e, ev yek girêdayî çawaniya endaman e.

Heke endam di pirsgirêka kurd de zelal bin, baweriyê bidin kurdan, ji wan bê famkirin ku ew ê di warê pirsgirêka kurd de polîtîkayên erênî bimeşînin, belkî dengên kurdan berê xwe bi wê derê ve bike û ev yek bibe sedem ku ew endam were hilbijartin.



> **Çi kesê ku bixwaze bibe serokkomar, hewceyî dengên kurdan e. Loma jî, di hilbijartina Serokkomariyê de, girîng e ku kurd giraniya xwe deynin ser şkevka şehînê. Dengên kurdan ne yekgirtî ye, beşek jê dê dengê xwe bide endama/ê ku dê AK Partî nîşan bide.**

## Zimanzan Prof. Dr. Geoffrey Haig re:

# "Kurdî di bin xeterê de ye"

**Li gora zimanzanê alman û pisporê kursiya kurdolojiyê ya zanîngeha Bambergê Profesor Dr. Geoffrey Haig "zimanê kurdî di bin metirsiyek pir mezîn de ye. Cemaveriyek mezîn ya gelê kurd zimanê xwe naaxive û paşde nade generasiyona paşêrojê . Heger ev rewş bê berdewamkirin vê di nav 50ê salan de kesên ku komplet karibin/zanibin zimanê kurdi biaxivin ve nemînin.." Bi Prof. Dr. Haig re hevkarê me Reşad Ozkan peyivî.**

*BasNûçe Münih*

**BasNûçe -** ***Kijan bandorên siyaseta têkçûnê li ser zimanê kurdî li çar perçêyên Kurdistanê hene?***

**Geoffrey Haig -** Siyaseta tekçûnê li her çar perçêyên Kurdistanê newekhev pêkhatiye. Kurdan karîbûn li Îranê û li Iraqê di bin şertên pir dijwar de zimanê xwe pêşda bikarbînin. Mesela li Iraqê formek nivisî ya soranî karîbû di dema bin dagirkirina Îngîlîstanê de xwe pêşdebibe. Desthilatdarên Tirkiye yê mayîna zimanê kurdî înkarkirin û bikaranîna zimanê kurdî qedexêkirin. Ev pêşîgirtinên li herema kurdan ji dema 30 salan ve paşê bi rêya mayîna lêşkerî hatin tûjkirin. Lipêhatinên siyaseta zimên ya dewletâ tirk biteybetî bandorek pir mezîn li kurdên Tirkiye yê kir: Livir bi komplet generasyonekî nû ji kurdan ve mezîndibe ku bê kompetents di dêzimanê xwe de fêrbibin.

***Koka zimanê kurdî...***

Pirsek bê mane, viha bêmane yê ku wek pirsa peşiya koka „îngîlîziyan", yajî „tirkan", yajî „ereban". Em li rewşa îngîlîziyên îro binerin: Perçekî wan ji kevnê, berî nişticehên germanên Birîtaniya ya mezîn ne; perçekî wan ji koçberên Skandînaviya yê (Wikinger) ne; perçekî wan ji dagirkerên romên vê demê ne, perçekî wan normanên ku Îngîlîstanê peşî 1000 sal berê ve xistibûn bin destên xwe. Çi mane heye ku li „koka" îngîlîziyan tê pirsîn? Ji bo wî awayî lêgerîna li „koka" kurdî jî bê mane ye. Ez naxwazim beşdarî tevî spekulîsiyonên wiha bibim.

***Ma netewe bûyîn bê çand û ziman dibê?***

Gelek mumkun e. Mesela gelê Skoç îddiadikin ku ew xwedî netewekê/kulturekê ne, lê zimanê wan jî ji şiklê kî zimanê îngîlîzî ye. Li Swissre yê 4 civakên zimanan bi hevra dijîn û netewa Swissrê ji wan pêktê. Li Yugoslavya jî di pêşiyê de ji „yek netew, yek ziman" ve pêkdihat, niha paşî belavbûna Yugoslavya yê bi sirbî û kroatî tê axaftin – hîn jî herdu ziman di praktikê de mîna hev in. Vê mijarên komgirêke nikarin xwe ji averû ya dewletê a ku bi esasên mafdewletî hatine bingehkirin, ben jihevkirin. „Ziman", „kultur", netewe" tiştên sazane ne yên ku xwe di şertên kemî de bingehdikin. Bi yekem statuya siyasi/mafdewletî ya dewletî sazanên yekane pêdardikin.

***Ma zimanê kurdî qurbanê jeopolîtikê ye?***

Kemasiya yekitiya siyasî ya kurdan bela netîceyên jeostratejîkî ne. Mêzeke Kurdistana Iraqê ne dewletek serbixwe ye, sebeba vê jî bela ku dewletên cîran di saziyên Dewletên Yekgirtî (DY) yê de dijî radibin. Bandora wan dewletên cînar li ser DY yê pirr xurt in. Eger welatekî wekî Tirkiye yê veto ya xwe pêkbîne, paşê sazkirina dewletek ya kurd ji aliyê navnetewî ve nikaribe be naskirin û sazkirin (wekî rabûna Rusya yê li dijî serxwebûna Kosova yê). Bivêjî rewşa kurdî ya îro netîceyeke vê siyaseta navnetwî ye.



***Paşêroja zimanê kurdî ...***

Ji bo ku zimanêk bi kompetents be axaftin û bikaranîn, divê zarok di civaka zimên de vî zimanî di zaroketiya xwe de bihêz fêrbibin. Ev tê vê watê ye: Ji dayik bûyînê heta 6/ 7 salan. Ancax wiha hemû hûrî yên ziman karin biraste ben fêrbûn û pehtkirin. Ev jî karibe helbet di keleka hînbûna hindek zimanên din jî pêkbeanîn. Lêbelê divê zarok zimanê kurdî bi têr di navbera gellek şertên cudayî de guhdarbikin û bi jîre bikarbînin. Bitenê ji dapîran li malê guhdarkirina kurdi têra zarokan nakin. Eger kî wiha mezînbibe ew ê nikaribin zimên bi temamî fêrbibin. Û ev tişt paşê di temenê ciwaniyê de qet dîsa naye ducarkirin. Ji bo wî awayî bênabê, çava dibê bibe gerek zarokên kurd bi zimanê kurdî mezînbibin.

Mixabin, dewleta tirk hemû îmkanên xwe seferber kiriye ku zarokên kurd di zarokiya xwe de dêzimanê xwe fêrnebin. Wiha îro li Tirkiye yê generasiyonekî temamî yê kurd bê fêrbûna zimanê xwe mezîndibe (yên temenê wan di bin 30 salî de ne) û nikarin gelek hûrî yên zimanê xwe bikarbînin. Lê pirraniyan wan kesan paşiyê de pê fêrbûna kurdî dikevin, di temenê ciwaniyê de heya sinirekî kurdî „nû" hîndibin, lêbelê kurdiya wan zirtî sewt dide, pir sert e û syntaksa/şoravaniya wan bi taybetî xurtê û di bin bandora tirkî deye. Li gora ku ez zanim û haya min jê heye ku bitenê hîn li gundan û hinek bajaran (wekî Bazît, Şemzînan) zimanê kurdî bi raste û jîre di navberan ciwanan hertim tê axaftin û bikaranîn.

Vê trajediyek e, lê xuyadike ku gelek kurd pirr yajî kêm bi esanî navdestbû ne û têkçûna kurdî qebulkirine: „em asimile bûn, em çi bikin", car bi car ji kurdên Tirkiye yê wan ifadeyan dibihîsim. Heqiqet ew e ku: cemaveriyek/hejmarek mezîn ya gelê kurd zimanê xwe nade generasiyona paşêrojê û xizmetiya zimanê kurdî nakin. Eger vê rewş wiha be berdewam kirin ve di nav 50ê salan de kesên ku tam raste ziman kurdî bizanîbin ve nemînnin.

***Pewêndiyên we bi zimanzanên kurdû bizanîngehênzimanzanistî yên li başûrê Kurdistanê re hene?***

Pircaran min bo pewendiyan serî li fakultêtên li herema Kurdistanê a otonom da. Ez dixwazim tekiliyan bi wan re sazbikim, lê heta niha ti hevkarî nehatiye ser nigan. Ji bo avakirin û firekirina pewendiyên navnetwî ez li Almanya yê bi gelek kesan re xebate dikim. Ev prosseseke hêdî ye, lê belê ez pir hevîdarim.



**Profesor Dr. Haig kî ye?**
Profesor Dr. Haig li zanîngeha Christian-Albrechts-Universität zu Kiel beşa zimanzanîstî ya beramberi û a giştî (Allgemeine und Vergleichende Sprachwissenschaft) xwendî ye. Di sala 1998ê de doktora xwe xelas dike. Di navbêra promosiyonê de ligel zenîngeha Otto-Friedrich-Universität Bamberg bi zimanê tirkî û îranî hîndibe. Ligel zanîngeha Australian National University, Universität Bielefeld, Christian-Albrechts-Universität zu Kiel û Collegium for Advanced Study li Swedê fêr-, û lekolîn kiriye.
Niha jî ligel zanîngeha Otto-Friedrich-Universität li Bambergê profesorê beşa kursiya Îranistîk ye û dersên kurdolojiyê fêrdike. Profesor Dr. Haig di çerçovaya lekolînên xwe de pirr caran serdana Kurdistanê jî kiriyê .
Profesor Dr. Geoffrey Haig bi 3 hevkarên xwe beşa zimanê kurdî birêva dikin.
Nixtên dijwar yên beşa kurdôlojiyê zarawên kurdî, konstruktsiyon û bingeha wan ne: Profesor Haig bi hemû zaravayên kurdî jî hînbûye.



# Kurd li Berlînê di çalakiya 1'ê Gulanê de bûn



*Foto - Armanc Agîd Nêrweyî*

**BasNûçe –** Kurdan, tevî komên gelên din li peytexta Elmanya Berlîn'ê 1'ê Gulanê pîroz kirin. Şahiya pîrozbahiyan bi beşdarbûna bi sedan hezar kesî ve pêk hat. Kurdên Berlînê jî beşdarê çalakiyên li bajarên Elmanya bûn û bi al, plaket û flayerên bi zimanên kurdî, elmanî û înglîzî coşa meydanan parve kirin.
Welatiyên ku beşdarî çalakiyê bûn, ji aliyekê ve kêfxweş bûn ku hejmara wan derdora yek milyonî bû û kolanên Berlînê bi alên hemereng û plakatan xemilandibûn, ku liser wan dûrişmên protestokirinê hatibûne nivîsandin û li mafê karkeran dipirsîn.
Parêzgarê Berlînê Klaus Wowereit li navçeya Kruezbergê ji bo çalakvanan qadekî amadekir, da ku li wir kombin û çalakiya xwe saz bikin. Lê hijmara wan ya zêde bû sedema piraniya kolanên derdora Kreuzbergê dagir bikin.
Hejmareke zor ji parlamêntarên elman jî tevlî çalakiyê bûn, û xwestin ku çalakî wek salên borî bi alozî derbas nebe.

# Diyaspora ya kevnare: Kurdên Xûresanê

**Welat Baz**

**BasNûçe** – Diyaspora (tarawge) ya herî kevnare ya kurdan li herema Xûresan a İranê niştecih e. Xûresan li bakûrê rojhilatê İranê ye û perçeyek herema etnîkî ya Fars e. Li kêleka eyaletên Mazenderan û Belûcîstanê ye. Xûresan cîranê Turkmenîstan û Efxanîstan ye û ji Rojhilatê Kurdistanê 2 hezar km dûre. Peytexta eyaletê Meşhed e.
Xûresan deriyê parzemîna Asyaya Navîn e. Ew der Xûresana kurda ye. Kurdên Xûresanê îro li bajarên wek Esferayen, Bocnûrd, Deregez, Şîrwan, Qûçan, Nîşabûr, Meşhed, Kelat, Çenaran, Destcerd, Kepekan, Noyhendan û Sereş dijîn. Her wiha bi sedan gundên ji hene. Dîsa bi hezaran koçerên kurdên Xûresanê her sal li zozanê vî welatê dûr konên xwe datînin.
Kurdên Xûresanê bi giştî Musluman û ji mezheba Şiî ne. Ji ber taybetiyên mezheba Şîatiyê, kurdên Xûresanê jî heta niha berî nasnama xwe ya netewî bajarê Qûçan e. Bajarê Şîrwan ku nifûsa wê 500 hezar e ji sedî 75 kurd e. Her wiha li peytexta eyaleta Xûresanê Meşhedê jî bi deh hezaran kurd dijîn. Dîsa li heremê her bajareke kurdan nêzikî 400 gundên xwe hene. Di parlamentoya İranê de çend nûnerên kurdên Xûresanî hene. Derbarê hijmara kurdan de heta niha lêkolînek fermî an jî zanistî nehatiye kirin.

**KURMANCİYA XÛRESANÊ**

bi nivîskî nayê xebitandin. Her çiqas gelek helbestvan hebin jî ew tenê bi devkî dibêjin. Ji ber vê yekê jî zimanê kurdên Xûresanê xwe nûh nake û her diçe dikeve bin bandora Farsî.
Helbet di paşmayina kurdî ya Xûresaniyan de tunebûna têkiliyên bi Kurdistanê re jî sedemek girîng e. Ew ji xebatên zimanzanî û pêşketinên wêjeyî haydar nînin.
Li aliyê din hin hewldanên ji bo pêşxistina ziman jî di nav kurdên





Xûresan, yanê "roja ku şewq dide", ji sedsalan virve mala kurda ye.

**Kurd li bakûrê eyaleta Xûresanê dijîn. Xaka ku ji kurdên vê deverê re bûye welat nêzî 100 hezar kîlometreqare fireh e. Peytexta kurdên Xûresanê bajarê Qûçan e. Bajarê Şîrwan ku nifûsa wê 500 hezar e ji sedî 75 kurd e. Her wiha li peytexta eyaleta Xûresanê Meşhedê jî bi deh hezaran kurd dijîn.**

ya Kurdayetiyê, nasnama olî derxistine pêş û bi refleksa Şîatiyê tevgeriya ne. Ji ber vê yekê jî têkilî di nav wan û kurdên Sunî de pêşneketine.

**PEYTEXTA KURDAN: QÛÇAN**

Ev herem li gor sîstema rêvebiriya İranê eyalet e. Nifûsa wê bi giştî 5 milyon e. Hijmara kurdên Xûresanê nêzî milyon û nîvek e. Ji bilî Xûresanê li İranê li heremên etnîk ê wek Mazenderan, Gîlan, Azerbaycan, Belûcîstan û Farisistanê jî bi sedhezaran kurd dijîn.
Kurd li bakûrê eyaleta Xûresanê dijîn. Xaka ku ji kurdên vê deverê re bûye welat nêzî 100 hezar kîlometreqare fireh e. Peytexta kurdên Xûresanê Zimanê kurdên Xûresanê herçiqas di bin tesîra farsî de mabe jî ew bi giştî bi kurmancî diaxifin. Ji ber ku girseya kurdên vê deverê ji cîhên cuda hatine, bi gelek devokên cuda diaxifin. Kurdên Xûresenê her çiqas li hin deveran di bazaran de bi farsî biaxifin jî, zimanê civakê kurdî ye. Ew bi giştî li malan, li civakan bi zaravaya kurmancî diaxifin. Lê li aliyekî din, ji ber ku perwerde, bazar, karên fermî û îbadeta olî bi zimanê farsî ye, Kurmanciya Xûresaniyan jî her diçe di bin tesîra farsî de dimîne. Di sala 1927'an de Kurdolog İnavov li zer zimanê kurdên Xûresanê lêkolînên zanîstî kiriye.
Ji bilî hin xebatên şexsî zimanê kurdî Xûresanê de destpêkiriye. Hin xortên kurd ku li Meşhedê di Zanîngha Fîrdewsî de dixwînin, dest bi derxistina kovereke çandî bi navê "kurmancî" kirine.
Ji ber ku di nav kurdên Xûresanê de wêjeya nivîskî pêşneketiye ziman jî her di cîyê xwe de maye. Mînakê wêjeya kurdên Xûresanê Şaîr Cafer Qolû Zenglî ye, ku bi kurmancî dîwanan nivîsandiye. Ew wek mînakek wêje ya kurdên Xûresanê jî tê naskirin. Kelîmûlah Tewehudî jî yek ji dirokzan û nivîskarê ku ji nav kurdên Xûresanê derketiye. Ew ji salên dirêj vir ve li ser dîrok û civaka kurdên Xûresanê dixebite.

Di salên dawîn de di nav xortên kurd ê Xûresanê de ku di zanîngehan de dixwînin, xebatên çandî û folklorî gelek pêşketine. Di nav xortên kurd ê deverê de xwendina zanîngehê pêşketiye. Ji ber vê sedemê li Xûresanê çînekî rewşenbîr peyda bûye.

Heta niha di nav kurdên Xûresanê de tevgerek netewî belav nebûye. Her wiha li Xûresanê partî û rêxistinên Kurdistanî jî xebatên netewî nemeşandine. Dîsa cudabûna olî bûye amilek ku ew ji tevgera Kurdistanê dûr ketine. Li aliyekî din jî ew xwe dûrî Kurdistanê dibînin.

Di nav kurdên Xûresanê de herçiqas hişyarbûna siyasî bi taybetî piştî baş nîne. Li gor giliyên wan, kurdên Xûresanê neketine nav bazarê. Karsaz û sermayedarên wan zêde tinene. Heta niha ji xeynî karê cotyarî û pez xwedî kirinê, ketina bazarê di nav kurdan de şerm hatiye hesibandin.

Di nav civakê de çîna serdest foadal in. Ew li bajaran xwedî qesr û xwedî dikkan, li gundan jî xwedî zewî û dewlemendî ne. Kurdên deverê debara xwe bi kiştûkal, an jî lawirvaniyê dikin. Li xaka Xûresanê zêdetir kiştûkala ce, genim, birinc û silqa şekir tê kirin. Her wiha baxvanî jî gelek pêşketiye û hemû cûrên fêkî û sebzeyan jî li heremê tên çandin. Di çandina avî de çemê Hezarmecît û bîr û bendavan bikar tînin.

## ÇAND Û HUNERA XÛRESANÊ

Kurdên heremê adet û toreyên xwe yên kevnare ku ji Kurdistanê bi xwe re anîbûn hîn jî didomînin. Ev dîmenên jiyana gundîtî ya kurdên Xûresanê wek rûpelek ji gundekî Kurdistanê ye. Helbet belkî jî taybetiya herî balkêş a kurdên Xûresanê mijûliya wan a bi mûzîkê ye. U dewlemendiya muzîka wan e.

Muzîk belkî jî ji bo parastina çanda kurdên Xûresanê bûye amilek mezin.

Helbet muzîk û enstrumantal ku perçeyek esasî jî mezhebê Elewîtî û Şiatiye ye di nav kurdên Xûresanê de jî cîhekî taybetî digre.

Ji ber vê yekê di hemû malên kurdên Ji ber vê yekê di hemû malên kurdan de enstrumantêlên muzîkê hene û zarok hîn di biçûkatiya xwe de çav li muzîkê dikin. Malbat ji çi çînê dibê bila bibe, ev şûnewarî û hezkirina muzîkê ji bo hemû kurdên Xûresanê wiha ye.

Dîsa dawet û şahî û dewlemendiya wan jî yek ji çavkaniyên xwedîkirina muzîk û reqsên gelêrî ne. Di nav kurdên Xûresanê de dawet û şahî cîhekî girîng digrin û her malbatek li gor derfetên xwe şahiyên mezin lidarixe.

## AGİRÊ NEWROZÊ Lİ LÛTKEYÊN ÇİYAYÊ ŞEYÎCANÊ



salên şoreşa Îslamî ya sala 1979an destpêkiribe jî, ew hişyarbûn wateyek netewî hilnegirtiye. Her çiqas di van salan de li Rojhilatê Kurdistanê serhildana netewî destpêkiribe jî, tevgera siyasî ya Rojhilat bi kurdên Xûresanê re têkilî dananîbû.

Piştî tevgera netewî ku li bakûr pêl da û weşanên telewîzyonên kurdî destpêkirin, qels be jî têkiliyên yekem di nav kurdên Xûresanê û tevgera netewî de sererast bû. Şerê çekdarî bandora xwe di nav kurdên Xûresanê de jî nîşan dabû û hin xortên kurd, ên Xûresanê tevlî têkoşîna dayik niştiman jî bûn.

Her wiha kurdên Xûresanê piştî weşanên telewîzyonên satalît ê kurdî zêdetir ji niştiman haydar bûne û çawên xwe dane ser Kurdistanê.

## ABORİYA KURDÊN XÛRESANÊ

Rewşa aborî ya kurdên Xûresanê Li bakûrê Xûresanê çar fabrîkayên şekir hene û bi hezaran karkerên kurd li wir kar dikin. Tenê di karxana şekir a Şîrwanê de ji pênc hezarî zêdetir karker dixebitin.

Eşîrên koçer yên kurd bi sedan sal in Çiyayê Şeyîcanê ji xwe re kirine welat. Ji bilî vî çiyayî li ser xaka Xûresanê ku kurd lê dijîn çiyayên mezin ê wek Golî, Hezarmecîd û Mînarok jî hene.

Di nav kurdên gundî yê Xûresanê de helbet lawirwanî sektora debarê ya sereke ye. Bi dehhezaran malbat bi lawirwaniyê îdara xwe dikin. Helbet dema lawirwanî tê gotin, koçerî tê bîra mirov. Her sal bi hezaran koçerên kurd ên Xûresanê havînan li zozanê vî welatê dûr konên xwe datînin.

Hîn jî bi dehhezaran kurd li ser çiyayên Xûresanê her sal konê xwe verdigrin û li pey keriyên xwe, li delav û kaniyên van çiyayan digerin.

Xûresanê de çi bajarî çi gundî muzîsyenî wek perçeyek jiyanê wek perçeyek çanda rojane rola xwe dilîze.

Ew li ber enstrumantalên cuda cuda qesîde, îrfanî, xezel û helbet goranî, lawik û heyranên xwe jî tînin ziman.

Her wiha di nav mûzîsyenên kurdên Xûresanê de hin mînakên ecêb jî hene. Wek ev hunermendê ku bi devê xwe li bilûrê dixe:

Hin sedemên civakî jî hene ku di nav kurdên Xûresanê de mûzîkê bipêş xistiye. Yek ji wan domkirina adet û toreyên dîwanxanê ye. Hîn jî gelek eşraf û dewlemendên kurd li vê heremê di dîwanxanên xwe de goranîbêj dihewînin.

Di şevbêrk û civatên kurdên vê deverê de, heta demên dereng hîn jî goranî, stran û lawje tên gotin. Ji ber vê sedemê gel hîn jî qedrê goranîbêj û muzîsyenan digre û muzîk wek karek gîranbiha tê qebûlkirin.

Yek ji adetên kurdên Xûresanê ku bi sedan salê wek roniya çavên xwe parastine Newroz e. Kurdên vê deverê şahiyên Newrozê 15 roj didomînin. Di van rojan de mêvandarî, serdanên qebrên bav û kalan, li meydanên gundan lîstikên keç û xortan û şahî hene.

Di şahiyên Newroza kurdên Xûresanê de werzîş yanê spor, cîhekî girîng digre. Meydanên Newrozê di heman katî de dibin meydanên pêşbirkên sporê jî. Ji ber vê yekê ji nav kurdên Xûresanê şampiyonên cîhanê yê wek Textî, Sehrawî û Şîrabî derketine.

Di roja 13a a şahiyên Newrozê de hemû kurd dadikevin meydanan. Li hemû bakûrê Xûresanê li meydanan bi dehhezaran kurd dicivin û vê cejna xwe ya kevnare heta beyanî şewq dide, bi reqs û bi stran û bi listîk û bi dilcoşî pîroz dikin.

*(Wê bidome)*

# "Di xweseriya demokratîk de pirsgirêka mezin perwerde ye"



Rênas Jiyan



Îrfan Amîda

**Di demên dawiyê de kurdên bakurê Kurdistanê ji bo projeya BDP ya ku dibêjin "em dê xweseriya demokratik ava bikin û di vê xweseriyê de perwerdehiya kurdî jî bi rêya şaredariyan pêk bînin" niqaşan dikin. Ramana nivîskarên bi kurdî dinivîsin û yên bûne şahidê şerê ku di salên 1990'î li Bakurê Kurdistan çêdibû û heta niha jî li Bakurê Kurdistanê dijîn, derxim holê û du pirsan bikim. ji çend nivîskaran Nivîskar Îrfan Amîda û Rênas Jiyan bersiva van pirsan dan. Pirsa min a pêşî di derbarê projeya BDP'ê "Xweseriya Demokratîk " de bû.**



Çiya Mazî

***Hûn wekî nivîskar û wêjevanekî kurd ku li Bakurê Kurdistanê dijîn û şahidî ji gelek bûyerên 30 salên dawiyê li Bakurê Kurdistanê rû daye kiriye, hûn, di derbareyê vê projeyê de çi difikirin? Ev projeya "Xweseriya Demokratîk" çi ye û dikare pêk bê an na? Kurd ji vê yekê re amade ne an na?***

**Îrfan Amîda -** Xweseriya demokratîk wekî projeyeke sîyasî ketiye rojeva kurdan û rojeva Tirkiyeyê lê mixabin tenê di çarçoveya siyasî û siyasetmedaran de maye. Ez nizanim gelo doza vê xweseriya demokratîk ji bo erdnîgariyekê ye an neteweyekê ye. Ango ji bo kurdan an Kurdistanê tê xwestin? An jî weku pirê caran BDP'yê destnîşan kiribû, ji bo hemû Tirkiyeyê tê xwestin? Heger em hin daxuyaniyên BDP'yê wekî çavkanî bistînin û di wê çarçoveyê de binirxînin emê bikaribin bibêjin ku ji bo hemû Tirkiyeyê tê xwestin û projeyeke giştî ye ku ev jî divê di çarçoveyeke dî de bê nirxandin. Bi awayekî Tirkiyê wekî çend kantonan difikirin ku ev jî ne karê şaredariyan e. Lê em argumanên hilbijartinê wekî referans bigirin em dikarin bibêjin ku ji bo Kurdistanê lê dîsa wekî avakirina kantonan û rêvebirina wan bifikirin ku ev peywendiyeke dî ye û cihê pêkanînê Kurdistan e.

Nivîskarekî bi kurdî dinivîsîne û çend heb pirtûkên wî yên helbestan, yên ceribandinan hene.

**Rênas jiyan bingeha ekolekê ku wî bi nav kiriye bingeha "Çirûskîzmê" jî bi pirtûka xwe ya bi navê "Çirûskîzm- Li ser goşt û agir û hunerê lêkolîneke fenomenolojîk" xwestiye çêbike. Hê jî li bakurê Kurdistanê dijî û edîtoriya kovara Çirûsk û Weşanxaneya Belkî yê dike. Rênas Jiyan bersiva pirs me ya pêşî wisa da:**

***Rênas Jiyan:*** Xweseriya demokratîk, otonomî ye; neqebûlkirina heterenomiyê ye, ango wek ku Kant dibêje, bi "maksîm"ên xwe, bi qaîdeyên ku ji aqilê xwe, xwe-bi-rêvebirin e. Helbet divê "xwe-serî" pêk were, hetta ne "xwe-serî" divê federasyon pêk were. A etîk û rasyonalîst ev e. Wekîdin "çirrav" û "xwîn" e.

***Demeke dirêj e ku kurdên bakurê Kurdistanê ji bo perwerdehiya bi zimanê kurdî jî têdikoşin. Di derbarê vê babetê de gellek tişt hatin gotin. Lê dema mirov bala xwe didêyê ji bo vê babetê jî di qada siyasî de bi piranî nivîskarên ku bi tirkî dinivîsin tê xwendin an jî tê guhdarîkirin (nivîskarên Tirk û Kurd) û derdikevin pêş. Îjar gelo hûn di projeya ku BDP yê daye pêşiya xwe an jî li gor tê gotin di vê projeya xweseriya demokratîk de perwerdehiya kurdî pêkan dibînin? Gelo rêveberiyên herêmî yên Kurd bi xwe dikarin perwerdehiya kurdî bikin, ji alî teknîkî, zagonî û siyasî ve? Hûn wekî nivîskar û wêjevanekî kurd yê ku li Bakurê Kurdistan dijî ji bo vê babetê çi difikirin?***

**Ji sala 1990'î û vir ve bi nivîsa kurdî têkildar e, ji NÇM yê bigre heta komeleyên mamosteyan di gelek saziyan de cîh girtiye. Di heman demê de romenek wî û çend pirtûkên wî yên helbestan hene. Hê jî li navenda Mêrdînê Mamostetiya dibistana Amadehîyê dike û li Zanîngeha Artûklûyê li ser ziman û wêjeya kurdî lîsansa bilind dike. Îrfan Amîda ji bo pirsa me wisa**

**Îrfan Amîda** Di xweseriya demokratîk de bi qasî ku ez dizanim pirsgirêka perwerdehiyê jî wekî xaleke bingehîn heye. Karê perwerdehiyê ji xwe li gelek welatan bi destê şaredariyan pêk tê. Û dibe kul li Kurdistanê jî bê damezirandin pergala perwerdehiyê. Lê ji bo Kurdistanê û kurdan ku di dîroka Komara Tirkiyeyê de heta niha zimanê wan qedexe bûye, ne tiştekee hêsan e helbet. Gelek hêlên wê ên teknîk hene. Pirsgirêkên pedagojîk, zanistî û metodolojîk hene. Lê bi ya min dîsa jî rewşa kurdan a niha ne ew rewş e ku mirov yekcarî bi reşbînî lê binere. Lewra îro ji gelek hêlan ve xwedî kuliyatekê ne kurd. Kar û amadekariyên ku hatine kirin bingehek danîne. Hem xebata Enstîtuyê hem xebata Kurdî Der'ê û hem jî bi qasî ku ez dizanim xebat û konferansên ku hatine kirin amadekariya vî karî û vê biryarê bûn û bingehek jê re danîne. Heger samîmiyet û zanistî bibin pîvan gelek kesên ku dikarin di vî warî de bixebitin hene îro. Hem îro sermiyan ji hêla wêje û pirtûkên giramer û pirtûkên dersan ên kurdî heye û a herî girîng jî kesên ku dikarin vî sermiyanî bikar bînin jî hene. Ya rastî ez bi xwe bi reşbînî lê nanerim. Aliyê herî bi aloz aliyê siyasî ye bi ya min. Divê vê yekê û nexşereya vê gavê BDP û siyaseta kurd diyar û aşkere bike. Û heman tiştî ne tenê jî bo kurdî (Kurmancî û Zazakî), ji bo hemû zimanên Kurdistanî wekî Suryankî, Erebî jî amade bike.

***Rênas Jiyan:*** Heta ku mirov daxwazê, "di xwe de" pêk neyne ew daxwaz "di yên din de" pêk nayê. Em ji dewletê dixwazin ku ji zimanê me hez bike; em ji dewletê re dibêjin, "heta ku tu ji zimanê me hez nekî em ji zimanê xwe hez nakin." Gellekî normal e ku dewlet ji zimanê me hez neke, lê ya anormal û bobelat û trajîk ew e ku em ji zimanê xwe hez nakin, heta ku em ji yên xwe hez nekin wê tu tiştê me pêk neyê. Kengî em ji yên xwe hez bikin û kengî em ên xwe hîs bikin wê çaxê wê hertişt baştir û pêkhatîtir be. Di mezela zimanan de teknîk, burokrasî, zagon, siyaset betal in, li dera han in; di meseleya zimanan de azadî û giyanwerî faal in. Perwerdehiya zimanan an axaftin an jî îfade, azadî ye; kesê ku li ser "lalîtiya" me "zimandirêjî"yê bike, bila biçe berê berê zimanê xwe mebred bike.

# Peşmergeyê biçûk yê 64 salî

*Ronahî Amed*

**BasNûçe -** Beşîr Oner di sala 1950'î de li Tetwanê ji dayik bûye. Di sala 1964'an de, di 14 saliya xwe de bihîstiye ku li Başûrê Kurdistanê Mele Mistefa partiyek ava kiriye û tevî peşmergeyên xwe ji bo azadiya Kurdistanê şer dike. Oner û hevalekî xwe bi xeyalên peşmergetiyê ketine rê û çûne Başûr. Oner ji ber temenê xwe yê biçûk, nikarîbûye bibe pêşmerge. Ji ber wê daxwazê dest daye armanca jiyana xwe. Niha di 64 saliya xwe de jî bi xeyalên yekîtiya gelê kurd dijî.

Mamê Beşîr di derbarê serpêhatiya xwe de wiha dibêje; "Li Tetwanê bahsa Mele Mistefa Barzanî dikirin. Digotin mirovekî misliman heye, ji bo azadiya Kurdistanê şer dike. Ez û hevalekî xwe fikirîn û me biryara tevlêbûna refên pesmergeyan da. Em bi erebeyekê çûn Silopiyê. Hevalê min zewicî bû. Di rê de strana "Yeşil ordek gibî daldım gollere" digot û digiriya. Lê baweriya me ya şoreşgeriyê hebû. Ji ber wê em bi hêz bûn. Li Silopiyê çiyayek nişanî me dan û gotin "Pêşmerge li pişta wî çiyayî ne." Em di nav çiya de, peyatî derbas bûn û çûn cem peşmergeyan. Dema em çûn cem pêşmergeyan xwarin dane me. Mirovên feqîr bûn. Em bi şev bûn mêvanê wan. Roja din ji hevalê min re gotin "eger tu bixwazî, tu dikarî biminî, lê hevalê te biçûk e. Em nikarin wî qebûl bikin". Ez paşve şandim. Min got "ez jî dixwazim bibim peşmerge." Lê fermandarek hebû li wê derê. Jê ra digotin Îsê, wî ji min re got "temenê te ji bo şer biçûk e. Tu vegere mala xwe. Dema tu mezin buyî, tu dikarî carek din werî." Herwiha min nekarî ez Mele Mistefa Barzani jî bibînim.

## XEYALÊN JÎYANEKÊ BÛN MÊVANÎYA ŞEVEKÊ

Mamê Beşîr dibêje, Ji ber ku nehiştine ew li gel peşmergeyan bimîne, hevalê wî jî nexwestiye tene bimîne. Ew ji pêşmergeyan qetiyane û çûne Zaxoyê. Li Zaxoyê hatine girtin û li zindanên çend bajarên Başûr hatine gerandin. Çîroka xwe wiha didomîne; "Em avêtin hepsê. Paşê çend rojan em birin Mûsilê. Piştî Mûsilê em li Duhokê, Bexdayê gerandin û disa vegerandin Zaxoyê. Piştî mehekê jî em şandin Tirkiyeyê. Li Tirkiyeyê, ji ber ku em bê pasaport çûne Iraqê, cezayê pereyan li me hat birîn. Di dadgehê de pirsa min kirin, ka ez ji bo çi çûme Iraqê. Min got ez ji bo xebatê çûme. Hakim ez ji bo karê paqijiyê şandim şaredariyê. Piştî sê rojan bavê min bihîst û ez ji kar derxistim û anî malê."

## PENABERÎYA WELATÊ XWE

Mamê Beşîr tîne ziman ku ji ber xeyalên xwe yên peşmergetiiyê di welatê xwe de bûye penaber. Ji ber ku xwestiye ji bo azadiya gelê xwe têbikoşe wek "eşqiya" hatiye nişandan û wiha dibêje; "Dema em wegeriyan Tetwanê, hinekan ji me re digotin "ew mafê kurdan diparêzin, bûne terorîst". Ji ber wê yekê min nekarî ez li Tetwanê bimînim. Di memleket de nefret ji min dikirin ji ber ku min xwestibû ez bibim pêşmerge. Rastiya me ew e. Ma em ne kurd in? Ez rabûm çûm Îzmîrê nêzîkî heft salan mam li wê dere. Paşê bavê min hat ez birim û şandim leşkeriyê. Jiyana min bi revê derbas bû. Li Îzmîrê , 5 salan di qumarxaneyekê de xebitîm. Tevlî karê nebaş bûm. Carekê du çek di destên min de hatin girtin. Ez sê mehan jî ji ber wê mam di hepsê de. Piştî 7 salên Îzmîrê ez hatim Stenbolê û zewicîm. Niha heşt zarokên min hene."

## XEYALÊN BÊ SÎNOR

Mamê Beşîr, derbarê jiyana xwe de wiha didomîne; "Ji ber ku jiyana min ewqas bi zor û zahmetî derbas bû, min tu kar nekirin, niha ez li cem zarokên xwe me. Min qala Kurdistanê dikir, lê zarokên min hemû ketin nav cemaatan. Ez nikarim tiştekî ji wan ra bêjim. Ew min xwedî dikin. Min di ciwaniya xwe de xwest ez bibim pêşmerge, paşê ketim nav karên qumarxaneyan. Paşê jî tobedar bûm û çûm bûme hecî. Her derdek dermanek heye. Derdê gunehan jî tobedarî ye."



Piştî PKK ava bû min dixwest ez tevlî refên PKK'ê bim. Lê mixabin ez dereng mabûm. Jiyanek min a cuda hebu, an jî PKK dereng ava bû, ez nizanim. Tenê rastiyek hebû di jiyana min de ew jî daxwaza şoreşgeriyê bû. Niha jî daxwaziya min ew e ku kurd hemû bibin yek û Kurdistanek azad ava bikin.



# 3 Bira'yên Kolana İstiklalê

Di meydan û kolanên bajarên mezin de muzîka ku tê bihîstin hinek caran ji ber sedemên aborî, hinek caran jî ji ber dijwariyên jiyanê, wek serhildanekê derdikeve holê û ev muzîk bi wextê re wek muzîka kolanan bûye parçeyek çanda bajarvaniyê.






Leyla Denlî

Dema mirov muzîka kolanan dide ber çavan, dibîne ku bi bajarvaniyê û bi encamên bajarvaniyê, bi bêkariyê re derketiye holê, lê sedemên herî girîng felsefe û siyaset in. Bi muzîkê, mirov sekna xwe yê li hember jiyana serdest nîşan dide û diqîre hemû hestên xwe. Ev çanda ku di rabirdûyê de reşik û hîppîyên ji banlîyoyên Ewrûpa û Emerîka'yê dihat, li navendên metropolan û pêşengî jê re dikir, niha di her kolanên bajarên metropolan de tê lidarxistin. Yek ji wan deran jî, 'Kolana Îstîklal'ê ye.

Her çi karê we hebe jî hûn ê nikaribin guhê xwe li hemberî van awazan bigirin. Carinan dengê kemanê, carinan dengê çelloyê, carina yê santurê û carina jî newayên Efrîqî hişê we ji serê we dibe li Îstîklal'a rengîn.

Di nav vê pirçandiyê û pirdengiyê de yek ji yên herî balkêş koma 'Koma Sê Bira' ye. Ev sê bra bi dengên xwe yê zîz û kurdî kolana Îstîklal'ê dihejînin. Gîtarên wan di destê wan de, stranên kurdî nîşanî hemû mirovan didin. Koka xwe yî Kurdistanî bi xwe re anîne metropola mezin Stenbolê. Bi gotina stranan ve hemû kurd bi ruhê Kurdistanî govendê digirin û dilirînin, gelek caran tûrîst jî beşdarî govenda wan dibin. Kêfa wan ji çavên wan xuya dibe. Ev xortên kurd, ji Kurdistanê ji bo kar hatine Stenbol'a mezin û biryar dane li kolanan muzîka xwe biqîrin.

Ez li gelek videoyên wan rast hatibûm. Ji bo ez kelecana di van videoyan bibînim û bi wan re bipeyivim, min berê xwe da Îstîklal'ê.

Ji van konserên biçûk, peyvên wek; 'şoreş, xerîbî, aştî û Amed' kêm nabin. Bi gelemperî bala kurdan dikişîne, muzîka wan. Ne tenê li Îstîklal'ê li Baxcilar û Şîrînevler'ê jî derdikevin kolanan.

Bariş Adal û Eymen Adal, birayê hev in û bi naskirina Erkan Benlî re biryara navê 'Koma Sê Bira' didin. Di navdarbûna wan de facebook û twitter jî bi bandor e. Me di dû muzîka wan re, bi wan re kurtesohbetek kir.

## Şivanê gîtarîst

Bariş û Erdal birayê hev in û li navçeya bajarê Mêrdîn'ê Dêrikê hatinin dinyê. Ji bo kar xwe li Stenbolê girtine. Bi destpêkirina sohbeta me re, Barış raboriya xwe bi me re parve dike û dibêje; ''li Dêrikê heta pola 5'an min xwend û ji ber perwerdehî bi tirkî bû, min dev jê berda.'' Herçend navê wan Koma Sê Bira be jî, hevalê wan Erkan Benlî ji wan qetiyaye û ew berdewamiya xwe bi vî navî didomînin. Berdewam dike Bariş; ''di 12 saliya min de wexta ez şivan bûm bavê min ji min re gîtarek kirî û min dest bi muzîkê kir. Ji bo berdewamiya muzîkê ez hatim Stenbolê û çendakî wek kasîyer li marketan xebitîm. Bi rastîhevhatina me, me xwest ku armanca xwe ya ji bo gelê xwe bînin cih û bibêjin em jî, kurd jî hene, muzîka kurda jî heye.'' Bariş ji Şivan Perwer, Ciwan Haco, Xêro Abbas û Rotînda hez dike û di rêya wan de dihere.

## Polîs û nîjadperest gefan dixwin!

Kom, bi gelemperî li Îstîklal'ê muzîkê li dar dixe. Ji êvarê heta seat 8'an bê bêhnvedan li kolanan e. Stranên wek 'Ahmet Kaya Ölmez, Özgürlük Çiçeğimsin, Amed Zîndanları'nda, Hevalê Remzî , Serhildan Jiyan e, Çerxa Şoreşê, Kemal Pir Yoldaş' bi girseya dora xwe re dibêjin û dengê wan Kolana Îstîklal'ê dilerizîne. Barış dest bi peyvê dike; "carinan hinek kes tên cem me û me tehdît dikin. Dibên 'me gelek kesên wek we ji vir rakiriye, hayê we jê hebe, bi kurdî stranan nebêjin ya na berpirsiyarê vê yekê ew ê ne em bin. '

Em ji wan natirsin û em ê di ber xwe bidin. Wan jî fêm kirin ku nikarin bi me. Bi berxwedana me niha gelek kom dikare muzîka xwe li Îstîklal'ê lidar bixin û em bûn pêşeng."

## Muzîka şoreşger tekoşîn û berxwedanê ye!

''Kêfa me ye herî mezin, dema em bextewariyê di rûyê guhdaran de dibînin, derdikeve holê. Carina tûrîstên bi peyvek tirkî nizanin, mînak Japon jî li me guhdar dikin û dikevin govendên me. Ev tişt gelekî kêfa meriv tîne.''

Ji gelek cihan, ji bo ew derkevin ser dikê daxwaznameyan dîstînin lê dibêjin; 'Em naxwazin ji kolanan biqetin, em dixwazin li kolanan, li nav gel, dengê dilsozî û kurdbûna xwe bigihîjînin gelê xwe û tekoşîna xwe li kolanan bidomînin.

